

## Şanoya me birindar e

Derhêner, lîstikvanê şano û sînemayê Ferhat Keskîn bal kişand ser kêmasî û pêşketinên şanoya kurdî û li ser dahatû û paşeroja wê anî ziman ku şanoya kurdî pir bi dûv boçika rojev an jî siyaseta rojane dikeve û bo gihîştina asta cihanî dereng dimîne. R16

## Çinara diroka kurdî: Şex Mîsbah

Şêx Mîsbah'ê ku li Farqînê ji alî gel ve pir tê hezkirin di çareserkirina pirsgirêkên bajêr û gelê bajêr de li gel Mehmûd Ezîzoxlû û Mêdî Zana roleke mezin dileyize. Ji ber vê yekê ciwanên kurd xwe li dora wî dicivînin û ji bo ji tecrûbe û zanînên wî sûd wergirin. R14


# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar:39 02 - 08 Sibat 2015 basnews.com




Xelil Berhem

R15

# Kobanê kavil bû lê netewiya



Di encama şerê 5 mehan de ku bajêr bû wek dika şerekî nedîtî, hemû kolanên Kobanê, hemû malên kolanan ruxuya. Bi dehhezaran niştecihên Kobanê malên xwe bi cih hiştin, bi sedan parastvanên bajêr di pevçûnan de jiyana xwe wendakirin. Li bajêr av, elektrîk, xwarim nema. Hemû rêyên derdorê hatin dopêçkirin. Jêrzemîna heremê bi giştî hat ruxandin. Kobanê niha bajarekî kavilkiriye. Li gel evçend hovitî jî Kobanê bû remza berxwedana kurd û netewiya.

Niha hêzên kurd ji bo rizgarkirina gund û derdora Kobanê dest bi tevgereke nû kirin. Gund û sengerên ku di bin dagira DAIŞ'ê de ne yek bi yek tên rizgarkirin. Bajarê kavilkirî ku wê wek muzexane ya ûcdanê mirovatiyê bimîne, ji nûh ve tê avakirin. Çav li rêye ku bajarê nû li derdora Miştenûrê bê avadankirin. Rêvebiriya Kontona Kobanê li kurdan û li cîhanê banga jinûhve jiyandina bajarê xwe dikin. Li aliyekî din niştecihên koçber yên Kobanê vedigerin malên xwe. R02 - 3



## "Qehremanên Kobanê radimûsim"

Piştî rizagarkirina Kobanê Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî şerwanên pîroz kir. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî li ser berxwedana şervanên kurd ê di eniyên şer li hember DAIŞ'ê şer dikin jî rawestiya û wiha got: ''Ez yek bi yek dest û çavên wan diramûsim. Kobanê serkeftina gelê Kurdistanê ye. Serkeftina mirovahiyê ya li hember terorîzma hovane."

Mesûd Barzanî her wiha eşkere kir ku DAIŞ hîn di 50 kîlometre sînorên Kurdistanê de cih digre. Daxûyaniya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî wiha berdewam kir: " Ji destdayîna bajarekî û çend gundan divê nebe şikestin. Şikestin ji destdayîna îrade û berxwedanê ye. Kobanê ya qehreman ji ber di ber xwe da û îrada xwe ji dest neda neket. Ez ji vê yekê bawerim ku Kobanê dê bi piştgiriya xelkê Kurdistanê û bi piştgiriya dostên Kurdistanê nekeve û her li ser piyan bimîne. Qurbaniyên ji bo xak û niştiman cihê şeref û şanaziyê ne. Zarokên milletê me li hember şerên terorê de qurbanî dan û qehremaniyeke mezin tomar kirin. Şehadeta Pêşmerge Zerevanê Başûrê Kurdistanê ya li Kobanê û şehadeta Pêşmergeyê Rojava Neçîrvan ya li Keskê ya herêma Musulê di rojekê de pêk hatin. Ev yek nîşaneya yekitiya milletê Kurdistanê ye. Wan nîşan da ku xelkê Kurdstanê di şopa yek dozê dene. "

## Nîqaşên serxwebûnê careke din!

Li Herêma Kurdistanê piştgiriya hewldanên ku olandina serxwebûnê ji nû bikeve rojevê zêde dibe. Ji alî din ve Hewlêr'a ku di nav gurrbûneke geşedanên dîplomatîk de ye hefteya çûyî malevaniya Serfermandarê Giştî yê Kanada kir. Ji alî din ve Hikûmeta Alman biryar da ku 100 leşkerên din jî bişîne RHK'ê. Paqijkirina hêzên DAIŞ'ê ji Kurdistan dom dike û ji eniyan hatina agahiyên serkeftinê dom dikin. Rawêjkarê Asayîşa RHK'ê Mesrûr Barzanî anî ziman ku ji bo tekoşîna li dij DAIŞ'ê alîkariya hêzên bejayî pêwîst e.

YE jî bi daxuyaniyekê ragihand ku ew piştgirî dide serxwebûna Kurdistanê. Cigirê Seerokê Parlemana Ewropa(PE) Richard Chemetsky di daxuyaniya xwe de balê kêşa ser mafê serxwebûnê yê gelê kurd û got: "Gelê kurd xwedî mafê çarenûsa xwe û serxwebûnê ye"



R04 - 5

## Çewlik

Bajêr di nav Amed, Serhad û Dêrsîmê de ye. Xakên her sê eyaletan ji quntarên çiyayên Çewlikê destpêdikin.
Çewlik di nav hêlîlarên 41 û 39 û di nav hêlîpanên 38 û 40'an de cîh digre.



R10 -11

# Kobanê kavil bû lê netewiya

Piştî rûdana şerê navxwe ya li Sûriyeyê ku roj bi roj rikberiya aliyan tûjtir kir, di nav van komên rikber de DAIŞ serî stend û bi awayekî hovane bû cihê metirsiyeke mezin. DAIŞ, bi qetlîamên mezin tafilê kete rojeva cihanê û berê xwe da Kobanê. Lê belê Kobanê bû nîşaneya berxwedanê û navê xwe li cîhanê belav kir û piştî serkeftinê êdî Kobanê kete pêvajoya ji nû ve xwe avakirinê. Her çiqas 5 mehan rastî êrîşên mezin hatibe û bi tekoşîna hêzên kurd xwe ji DAIŞ'ê parastibe jî niha bajarekî kavil e. Kobanêya ku zirxa DAIŞ'ê ya 'têkneçûnê' şkand û bi berxwedariya xwe li cihanê sempatiya tekoşîna kurdan belav kir niha bi tevahî ji DAIŞ'ê hate paqijkirin û li gundên derdora wê operasyonên paqijkirinê didomin. Hefteya çûyî, piştî ku Girê Miştenûrê ku girekî pir stratejîk e hate stendin DAIŞ'iyên ku di nav Kobanê de mabûn jî hatin têkbirin û êdî pêvajoya rizgarkirina gundan destpê kir. Di vê hefteya dawî de bi dehan gund jî hatin rizgarkirin lê DAIŞ'î bi çekên menzîl dirêj hewldanê êrîşan didomînin. Bajar her çiqas ji sivîlan hatibe valakirin jî, ji ber ku yek maleke bê ziyan jî nemaye ev serkeftin di rûyê kurdan de kêfeke bi kenegirî der dike.

Bajarê ku bi operasyonên hevpar ên Pêşmerge û YPG/YPJ'ê hate rizgarkirin tê payîn ku ji nû ve bê avakirin. Her çiqas ji bo şêniyên Kobanêyî banga vegerê bê kirin jî, ji ber ku li bajar av, elektrîk û mercên bi cihbûnê tune ne diyar dike ku wê paş ve veger dirêj dom bike. Ji ber ku 5 mehan di bin êrîş û bomberanan de ma bajarê Kobanê niha wek kavilekî dîrokî xuya dike. Her çiqas ji nû ve avakirina Kobanê bê nîqaşkirin jî, ji ber ku xeterî bi tevahî nehatiye berterafkirin û pêşbîniyên ku wê şer pir dirêj dom bike di serê mirovan de peroşiyeke ne diyar der dike. Ji aliyekî din ve pêşniyaza ku 'Bila Kobanê bibe muzexaneyeke vekirî' jî têne kirin.

Piştî ku DAIŞ li Kobanê hate têkbirin û Kobanê bala cîhanê kêşa ser xwe, li gel bi hezaran sivîlan, her wiha gellek şandeyên siyasî, rojnameger û lêkolîner jî têne serdana Kobanê. Li ser vî bajarê kurdan ku ji destpêka şer ve xala sereke ya rojeva dinyayê ye şîroveyên wek; 'Di serkeftina wê de bandora derûniya ku bi ser medya û amûrên ragihandinê hate afirandin jî heye' têne kirin. Li vî bajarê ku bû eniyeke ku DAIŞ'ê herî zêde têde wundahî da, li gel ku mercên jiyanê lê nemaye, her wiha xeteriyeke din jî heye. Weke tê zanîn, ji ber ku DAIŞ'ê meytên endamên xwe yên ku di şer de hatine kuştin di cî de hiştiye û reviya ye, hem navenda Kobanê û hem jî gundên derdorê bûne wek bênderên kuştiyan. Bi germbûna hewayê re ev yek wê xeteriyeke mezin der bike û divê ev pirsgirêk jî bê çareserkirin.

### Gelo şer qediya?

Her çiqas bajar bi tevahî hatibe rizgarkirin jî, ji ber ku Sûriye cihê ku DAIŞ tê de herî çalak e û ji ber ku bi hezaran çekdarên DAIŞ'ê yên ku êrîşê Kobanê kiribûn pav ve vekişiyan di serê mirovan de pirsên bê bersiv der dibe. Lewre DAIŞ stratejiyeke şerê nîzamî nake û taktîka wê ya ku herî pir bikar tîne ew e ku cihên ku êrîşê wê dike dirûxîne û derfetên jiyanê ji holê radike. Heta îro hemû cihên ku êrîşê wan kirî ye rûxandiye û tê zanîn ku Kobanê ji bo DAIŞ'ê pir watedar e. Ji ber vê yekê DAIŞ her çiqas paşve vekişiyabe jî xeteriya ku siberoj ji nû ve êrîşê Kobanê yan jî devereke din ya Rojava bike heye. Ji ber ku hefteya çûyî hêzên rejîmê êrîşê Hasekê kirin û ji DAIŞ'ê de derfetên tevgerînê peyda kirin û her wiha ji ber ku YPG'ê piraniya enerjî û cebilxaneyê xwe di Kobanê de xerc kir diyar dibe ku ji bo tevahiya Rojava egera xeteriyeke mezin dom dike.

### Kobanê: Têkçûn e yan serkeftin e?

Beriya şer, her çiqas ji ber ku ji Cemiyeta Xoybûnê re malevaniyê kiribû di dîroka kurd de cihekî grîng be jî dinyayê nave wê jî nebihîstibû. Lê piştî êrîşên DAIŞ'ê bû navekî sereke ku di Google'ê de herî zêde tê lêgerîn. Hem ji ber ku hêzên kurd bi derfetên pir kêm li dij çekên giran ên DAIŞ'ê têdikoşiyan û rola şervanên jin ên kurd, hem jî ji ber ku Kobanêyên ku koçî bajarên bakurê Kurdistanê, Tirkiyeyê û dinyayê kirin, li kuçeyên wan bajaran jiyan û bi parsekî û mercên dijwar hewl dan ku jiyana xwe bidomînin, ev bajarê piçûk bû cihekî ku li her deverên dinyayê navê wê tê bi lêvkirin û li serê tê axaftin. Ji ber ku şervanên jin di çapemeniya dinyayê de bi taybetî ji alî magazîn, moda û hin babetên popûler de weke îkon hatin bikaranîn, Kobanê weke; 'bajarê ku zirxa DAIŞ'ê şkand' da qebûlkirin. Weke tê zanîn ji destpêka şer ve bi sedan rojnamegerên herêmî û biyanî, bi alavên xwe yên herî teknîk û pêşketî hatin Pirsûsê û li wir bêndereke ragihandinê saz kirin. Di encamê de Kobanê niha jî di çapemeniya cîhanê de weke 'Navenda serkeftinê' tê bikaranîn. Bi ked û fedakariya hêzên kurd û bi taybetî ya şervanên jin ên kurd Kobanê ji tûndrevan hate paqijkirin, lê belê li ser pirsa 'Gelo ev serkeftineke rasteqîn e yan na' nîqaş têne kirin. Lewre ji destpêka êrîşên DAIŞ'ê ve koçên herî mezin ji vê derê bûn. Li Rojava pêvajoya ku ji polîtîkaya pêkanîna kemberên ereb a ku kurdan ji van deveran derxis destpê kir îro veguherî qewirandina ji bingeha xwe û 2,5 milyon kurd herêmê terikandin û koçî deverên din kirin. Ji ber ku Kobanê jî di vî warî de bû nimûneya herî berbiçav û ev yek di serê mirovan de ramanên xeternak der dike. Ji ber sedemên ku li Kobanê sivîl nemane û wê avahiya demografiya bajêr careke din weke berê nebe û ji ber bajar bi tevahî serobino bûye û ne pêkan e ku ji nû ve veguhere wargeheke jiyanê, her çiqas piştî derxistina DAIŞ'ê wek 'bajarê serkeftinê' bê nîşandan jî siberoja wê ne diyar e. Ji wêne û dîmenên ku ji Kobanê tên jî diyar dibe ku hêzên kurd 'govenda serkeftinê' li ser diraxeya kavilê bajêr lidar dixin. Ev yek van pirsan di mirov de der dikin: Gelo di dest de çi ma? yan jî: Ev ê bi kêrî çi bê?




### Bilanço giran e

Li gel şerê ku 5 meh in dom dike dîmenek tevlîhev û tirsnak derxistibe holê jî, bêguman bîlançoya Kobanê pir giran bû. Li gel têkçûna nexşeya fîzîkî û demografyaya bajêr, ji holê rabûna çandinî û hemû derfetên ku debara mirovan pêk tîne, her wiha bîlançoya teknîkî ya şer jî barê kurdan girantir dike. Li gor bîlançoya herî dawî, ji destpêkê heta îro, li Kobanê 3 hezar û 710 DAIŞ'î hatine kuştin. Di şerê ku 408 şervanên YPG/YPJ'ê jiyana xwe ji dest dane de, 2 Pêşmerge û 2 şervanên endamên partiyên din ên kurd jî jiyana xwe ji dest dane. Ji Lîvaya Şoreşgerên Reqqa ku girêdayî Artêşa Azad e 13, ji Lîvaya Roja Bakur jî 2 şervanan jiyana xwe ji dest dane. Li gor daneyên bîlançoyê DAIŞ'ê 19 jê êrîşên xwekujî 37 êrîşên maşînî pêk aniye. 87 maşînên leşkerî, 16 tang, 4 Hummer, 8 Doçka, 2 maşînên zirxî hatine îmhakirin û gellek teçîzatên leşkerî, çek û teqemenî jî ji alî hêzên kurd ve hatine desteserkirin.

### Gelo hêviya kurd ji nû ve jîn dibe?

Li gel hemû neyênîtiyên wek; wundahiyên giran, rastiya têkçûna bingeha demografya, derblêxistina hovîtiya DAIŞ'ê û perçekirina karîzmaya wê, tenê dikare bibe sedema tebesumekê û ew tebesum jî 'Hêviya kurdan...' e. Dîmenê ku li Şengal, Kerkûk, Zûmar, Rabîa, Mûsil û Kobanê derkete holê diyar dike ku hêzên kurdan derbeke mezin li motora vê mekanîzmaya xeternak a hevdem a ku artêşên nîzamdar belawela dike û dinya hewl dide ku jê xelas bibe xistine. Vê yekê hêviya kurdan a ku li ber têkçûnê bû ji nû ve şên kirî ye û ya herî grîng ev e... Ji ber vê yekê, bêguman wê Kobanê di bîrdanka nifşên siberojê de wek bajarekî ku hêvî lê vejiya ye cih bigire.

### Li Kobanê 'berxwededana avakirinê dest pê kir

Şer bêguman karesteke mezin bi ser Kobanê de anî. Ev hemû pêkhate êdî di îstatîstikên dîrokê de cihê xwe digrin û





Asya Abdullah: "Bajar bûye kavil. Ji ber vê hindê barekî giran li ser pişta me ye. Ji bo vegera xelkê Kobanê û xizmeta wan me xebat dane destpêkirin. Hemû xizmetgûzariya xelkê Kobanê dê bê kirin. Hemû pediviyên wan dê beên dabînkirin. Rêveberiya Kobanê niha li ser vê yekê kar dike."

bi şûn de man. Mirov êdî dikare bêje ku li Kobanê 'berxwedana avakirinê' dest pê kiriye. Lijneya jinûveavakirinê ya ji hêla rêveberiya kontana bajêr hatiye tayînkirin dest bi xebatên xwe kir. Hat zanîn ku dê lijne pêşxebatekê bikê û bi dû re jî şêwaza avakirina bajêr diyar bike. Hevseroka PYD'ê Asya Abdullah di derbarê jinûveavakirina bajêr de agahî dan rojnameya me. Abdullah anî ziman ku barekî giran li ser pişta wan e û ew ê bajêr jinûve ava bikin. Abdullah bal kişand ser êrîşên tûndrew ên DAIŞ'ê jî û wha berdewam kir: "DAIŞ'ê dixwest bi wan êrîşên xwe hemû herêmê û têx bin kontola xwe û wê karesata bi ser Kobanê bi ser hemû Kurdistanê de bêne. Lê belê hêzên kurd destûra vê yekê nedan. Li Kobanê berxwedan gihiştiya asta duyemîn jinûveavakirina bajêr jî berxwedan e"

Hevseroka PYD'ê Asya Abdullah herwiha eşkere kir ku şer li gundên nêzîkî Kobanê berdewam dike û heta hemû herêm ji DAIŞ'ê neyê paqijkirin dê operayonên hêzên kurd berdewam bike. Abdullah behsa xebtaên rêveberiya kontonê ya ji bo avakirina bajêr jî kir û wiha got: " Bajar bûye kavil. Ji ber vê hindê barekî giran li ser pişta me ye. Ji bo vegera xelkê Kobanê û xizmeta wan me xebat dane destpêkirin. Hemû xizmetgûzariya xelkê Kobanê dê bê kirin. Hemû pediviyên wan dê beên dabînkirin. Rêveberiya Kobanê niha li ser vê yekê kar dike."

### Pedivî bi kampeke demkî heye

Hevseroka PYD'ê anî ziman ku avahiyên karên xizmetgûzaraiya xelkê pêk bînin jî hatine rûxandin û beriya her tişti pediviya wan bi kampên demkî hene da ku karibin dest bi xebatan bikin. Abdullah behsa pêşnnûmeya avakirina bejêr jî kur û wiha got: " Li Kobanê pediviya me bi kamapan heye. Ji bo xelkê bajêr jî divê malên nû bêne çêkirin. Hewceye xelk demekê lli kampana bimînin eger malên wan jî hatin çêkirin dikarin derbasî malên xwe bibin. Bi vê yekê dê pêşnûmeya jinûvêavakirina Kobanê bi dawî bibe."

Abdullah di dirêjahiya axaftina xwe de hewcedariya vebûna korîdara mirovî jî anî ziman û wiha domand: "Niha hewcedarî bu gellek derfetan heye. Lewre DAIŞ cihê ku dagir kir ya rûxand an jî talan kir. Niha gundên ku YPG'ê YPJ'ê azadkirine hemû hatine talan kirin. Hemû der hatine şewitandin. Bo vê yekçe ger korîor venebe û alîkari ji me re neyê em ê têkevin tengasiyan. Hewcedariya me bi hemû tiştî heye. Eger derfet hebe em dixwazin ev korîdor ji ser Tirkiyê vebe. Pediviya me bi derfetên tendurustî, derfetên avakirina kampê û derfetên lojîstî heye. Demil dest pediviya me bi van tiştan heye. Gellek kêşeyên me dê bi korîdora mirovî bêne çareserkirin.

### Lijne di pêşiyê de dê perwerdê bistîne

Hevseroka PYD'ê li ser xebat û kar lijneya avakirina bajêr jî rawestiya û anî ziman ku dê lijne bê perwerdekirin û dê gellek kom jî bi ser lijneyê kar bikin. Abdullah wiha domand: "Dê gellek kom bi ser vê lijneyê ve kar bikin. Û dê girêdayî reêxistinekê bin. Ji bo piştgiriya ji derve û avakirina bajêr dê endezyar û avahîsazan pispor kar bikin. Dê li ser wêranbûn û rêjeya xelkên ji bajêr koçkirine jî xebat bêne kirin. Pêşniyara Kobanê li ciheke din bê avakirin û bajar ji muzeyê hiştin jî heye. Em ê vê pêşniyarê û hemû pêşniyaranbinirxînin. Ev lijne dê xebatên xwe bikin û raporan jî pêşkêş bikin."

### Xetereya term û taqemeniyên neteqiyayî

Abdullah ragihand ku pediviyên xelkê yên tendurustî ji hêla Heyva Sor têne dabînkirin û li nava bajêr termê gellek endamên DAIŞ'ê hene û divê ew demil dest bêne paqijkirin. Abdullah her wiha ragihand ku termên endamên DAIŞ'ê ji bo xelkê bajêr xeter in û dibin sedema gellek nexweşiyan. Abdullah wiha berdewam kir: " Ev term dê bibin sedema gellek nexweşiyan. Bo vê hindê divê bi lez bêne rakirin. Bo vê yekê alîkariya pispor û komeleyan heye. Hewceye demildest term û taqemeniyên neteqiyayî bêne berhevkirin."

### Serkeftin a her çar perçeya ye

Abdullah eşkere ir ku rizgarbûna obanê li hemû Kurdistanê bûye cihê şanazî û bextewarî ye û hêzên kurd ew sekeftin tomar kirine. Abdullah berxwedana hêzên kurd destnîşan ir û wiha got: "Xelkê Kobanê berxwedane li hember DAIŞ'ê dihat dayîn didît û din ava wê berxwedanê de jiyan dikir. Hêviyên serkeftinê yê kesên li vira û kesên ji der ve piştgiriya me dikirin hebûn. Vê berxwedanê dê ev serkeftin bianiya. Hemû kesî dizanîbû ku ew roja serketinê dê bihata. Hemû kes niha li wî bajarê wêranbûyî şahiyê dike. Ev yek ne ji bo kurdan tenê, ji bo xelkê hemû herêmê wisa ye. Berxwedana Kobanê, berxwedana sînorê Kobanê û Sirûcê ye. Ji roja destpêka berxwedanê bi sedan mirov 24 saetan li ser sînor bûn. Hem bi şev û hem i roj piştgiriya Kobanê kirin. Deqeyekê jî em bi tenê nehiştin. Bi sedan mirov bûn şahidê berxwedanê. Vê serketinê hêz da xelkê mey ê li çar parçeyan. Ev serkeftin li çar perçeyên Kurdistanê hat pîrozkirin.

Îro Kobanê ye sibê jî Amed

Fermandeyê yekîneyên pêşmerge yê li Kobanî El Hemid Musleh Muhammed El Zebari agahî da rojnameya me û anî ziman ku rizgarkirina Kobanî bi ked û xebata Kurdistanê hemûyan bû û şanaziya tevan e.El Zebarî got ku îro em li Kobanî ne,sibê dusibe pêdivî hebe em amade ne herin Amedê jî û wih berdewam kir ''Rizgarkirina me ya gundan jî bi lez dibe. Em ji bo parastin û piştgiriya birayên xwe yên Rojavayê Kurdistanê hatine vir. Heta cihên destê DAÎŞ'ê dene bêne hemû werin rizgarkirin em dê piştgiriyê bidin. Kurdistan yek perçe ye û têkoşîna gelê Kurdistanê bûye yek hêz.Îro em li Kobanî ne lê sibê dê li Amedê,rojeke din jî li Hasekê bin.Konjunktura siyasî çi ji me re bêje em ê wê bikin.'' Fermandeyeke din ê pêşmerge Hamid Dihemgerî jî ji rojnameya me re axivî û wiha got: ''Me ev yek ferq kir ku çar perçeyê Kurdistanê yek e. Em û birayên me yên qehreman YPG em li hember çeteyên DAÎŞ'ê di yek sengerê de bûn. Li vir têkoşîneke gewre hate dayîn.Rola me jî di vir de mezin bû. Li hember çekên giran me xwe ragirt.Piştî rizgarkirina Kobanê ji bo rizgarkirina gundan operasyonan dest pê kir.Bi taybetî jî çend gundên li başûr û rojavayê bajêr, bi operasyonên yekhêzî hatin rizgarkirin.Êdî bila her kes baş bizane,çi bakur çi rojhilat çi rojavayê Kurdistanê,em amade ne şer bikin.Kurdistan yek e''

www.arsivaku

# Nîqaşên serxwebûnê ji nû ve

Li Herêma Kurdistanê piştgiriya hewldanên ku olandina serxwebûnê ji nû bikeve rojevê zêde dibe. Ji alî din ve Hewlêr'a ku di nav gurrbûneke geşedanên dîplomatîk de ye hefteya çûyî malevaniya Serfermandarê Giştî yê Kanada kir. Ji alî din ve Hikûmeta Alman biryar da ku 100 leşkerên din jî bişîne RHK'ê. Paqijkirina hêzên DAIŞ'ê ji Kurdistan dom dike û ji eniyan hatina agahiyên serkeftinê dom dikin. Rawêjkarê Asayîşa RHK'ê Mesrûr Barzanî anî ziman ku ji bo tekoşîna li dij DAIŞ'ê alîkariya hêzên bejayî pêwîst e.

**YE piştgirî da serxwebûnê**

Yekîtiya Ewropa(YE) jî bi daxuyaniyekê ragihand ku ew piştgirî dide serxwebûna Kurdistanê. Cigirê Seerokê Parlemana Ewropa(PE) Richard Chemetsky di daxuyaniya xwe de balê kêşa ser mafê serxwebûnê yê gelê kurd û got: "Gelê kurd xwedî mafê çarenûsa xwe û serxwebûnê ye" Nûnerê YE yê RHK'ê Dîlawer Ajgeyî ragihand ku di hevdîtina xwe ya bi Cîgirê Serokê PE Richard Chernetsky de mijara serxwebûnê hatiye rojevê. Ajgeyî balê kêşa ser koçberên ku hejmara wan di seriya milyonekî de ye û anî ziman ku wan daxwaz kirî ye ku dewletên Ewropî alîkariyên ji bo koçberan zêde bikin û da zanîn ku ew ê vê mijarê arasteyî rojeva PE bikin.



**"Kurd nîşaneya bratiyê ne"**

Cîgirê Serokê PE'yê Chernetsky jî diyar kir ku kurd li herêmê bûne nîşaneya bratî û bi hev re jiyana gelan û got: "Kurd mafdar in ku serbixwe bibin û çarenûsa xwe diyar bikin" û piştgirî da serxwebûna Kurdistanê. Chernetsky balê kêşa ser tekoşîna li Kurdistanê ya li dij DAIŞ'ê tê û ji ber serkeftinên wan ên li hember DAIŞ'ê hezên kurd pîroz kir.

**"Kurd parasvanên demokrasiyê ne"**

Koordînatorê Têkiliyên Derve yê Koma ECR ya PE'yê û Parlanemê Îngilîz Charles Tannock jî di hevdîtina xwe ya bi Nûnerê RHK'ê Ajgeyî re de peyamên ku piştgirî didine serxwebûnê dan. Tannock anî ziman ku ew pir dixwaze Kurdistanê bibîne û got: "Kurd parasvanên aşitî, demokrasî, hurmetdariya mafê mirovan û pêkaterên bihevre jiyanê ne"

**YE li Hewlêrê nûnergehê vedike**

Piştî daxuyaniyên piştgirîdayîna serxwebûna RHK'ê yên berpirsên PE'yê, ji YE'yê jî daxuyaniyek hat. YE, dixwaze têkiliyên xwe bi RHK'ê re bigeşîne. Bi vê mebestê biryar da ku li Hewlêrê nûnergehekê veke û da zanîn ku ji bo vekirina nûnergehê dest bi xebatan kirî ye. Heta niha 32 welatan li Başûrê Kurdistanê balyozxane û nûnergeh vekirine. Bi taybetî jî di van demên dawî de Serokwezîr, Wezîr û Payebilindên gellek welatan hatin Hewlêrê û dane zanîn ku ji bo têkiliyên dîplomatîk bigeşînin dest bi xebatan kirine.



**"Wê kurd biryara dema dewletbûnê bidin"**

Li RHK'ê nîqaşên serxwebûnê didomin. Li Kurdistanê, ji aliyekî ve tekoşîna li dij DAIŞ'ê û pêşveçûna Pêşmerge, ji alî din ve jî nîqaşên serxwebûnê didomin. RHK, DYA, YE, partiyên perçeyen Kurdistanê, akademîsyen û gel serxwebûnê nîqaş dikin. Li Kurdistanê, ji aliyekî ve şerê li dij DAIŞ'ê dom dike, ji aliyê din ve jî nîqaşên li ser gavên ku di pêvajoya qeyrana şer de kurd hatin cem hev û ji bo yekîtiya neteweyî avêtin û serxwebûna RHK'ê dom dikin. Gellek aliyan li ser pêvajoya dewletbûyîna Kurdistanê nirxandinan kirin.

**"Kurd dikarin biryara çarenûsa xwe bidin"**

Berdevkê Serokatiya RHK'ê Fûad Hiseyn di nirxandina xwe ya di derbarê nîqaşên serxwebûna Kurdistanê de mafê biryardayîna çarenûsa kurdan destnîşan kir û got:k "Mafê Kurdistanê ku bibe dewlet heye. Lê belê wê gel biryar bide ka wê kîngê bibe dewlet. Ji bo serxwebûnê hin gihanekên ku divê bêne derbaskirin hene.

Ev mijar bi rewşa aborî, siyasî û leşkerî rasterast têkildar e. Divê dewletên cîran û yên dinyayê ji vê yekê haydar bin. Divê hemû geşedan bi diyalogê bimeşin. Divê bi Bexdayê re rêgeheke siyasî bê meşandin û biryareke hevbeş bê dayîn. Ev babet bi çekan nikare bikebe meriyetê"

**Goran: Divê astengiyên li pêş vê yekê bêne rakirin**

Li ser navê Tevgera Goran ku di Parlamenta Kurdistanê de piştî PDK'ê hêza herî mezin e, Endamê Polîtburoyê Dr. Mihemmed Alî got: "Wek teorîk mafê hemû gelan heye ku bibine dewlet, lê belê di pratîkê de hin astengî hene. Ji bo ev astengî bêne rakirin divê gavên berbiçav bêne avêtin. Bêguman ez nabêjim ev qet ne pêkan e. Lê belê, di vê pêvajoyê de divê em li ser vê mijarê pir hûr bibin û bixebitin"

**YNK: Pêdivî bi pêvajoyeke goncav heye**

Endamê Lijneya Serokatiya YNKê Perwîn Bakekir jî di derbarê mijarê de got: "Ger ku ji bo serxwebûnê pêvajo goncav bibe, wek YNK em ê beriya her partiyan pêşengiyê ji serxwebûnê re bikin û em ê xwe azad bikin" Babekir, vê nirxandinê kir: "Olankirina dewletekê tenê bi vîneke siyasî pêk nayê. Parastina sînorên wê dewletê, aborî û erdnîgariya wê jî grîng in. Ji bo olankirina dewleta kurd pêdivî bi pêvajoyeke goncav heye"

**"Avakirina dewletê mafê kurdan ê rewa ye"**

Endamê Serokatiya Lijneya Partiya Kurdistanê Îslamî ya Yekgirtî Ebubekir Ali anî ziman ku hemû partî dixwazin meseleya serxwebûnê têxin rojeva xwe. Ali behsa xebatên partiyan û serbixwebûna Kurdistanê jî kir û wiha domand: " Eger hemû partiyên siyasî yên herême bi awayekî ciddî li ser vê yekê bisekinin û bi hev re kar bikin heta 3-4 salan dê ev kar bi encam bibe. Firotina me ya nefta me û ketina herêmên ku li gor xala 140'î ya makezagpona Iraqê ya bin kontrola me ji bo serxwebûnê pêngavên gellekî mezin bûn."

Berdevk û Endamê Lijneya Serokatiya Partiya Civaka Îslamî Muhammet Hekîm Cabbar jî wiha got: " Devletbûyîna kurdan an jî ragihandina serxwebûnê mafê kurdan ê rewa ye. Lê belê ji bo vê yekê hewldanên durist hewce dikin"

**Almanya leşkeran dişîne Kurdistanê**

Peywendiyên di navbera Hewlêr û Almanyayê yên êrênî berdewam dikin. Almanyaya ki di meha tebaxê de leşker şandibûn Kurdistanê niha dîsa leşkeran dîşîne. Parlementoya Almanyayê biryar stend ku 100 pêşmergeyên din bişîne Kurdistanê. Almanyaya ku li hember şerê DAIŞ'ê piştgiriya kurdan dike û bi Hewlêrê re peywendiyên baş datîne piştgiriya xwe ya li Kurdistanê zêde dike. Parlementoya Kurdistanê biryara hikûmetê ya şandina leşkeran bo perwerdekirina Pêşmergeyan pesend kir

## Pêşmerge gîhîştin deriyên Musilê

Pêşmergeyên ku ji roja êrîşên DAIŞê li ser Kurdistanê li hember DAIŞ'ê şer dikin gihîştîn ber deriyê Musilê. Yekîneyên pêşmergeyên li Rojavayê Kurdistanê li gel YPG/YPJ'ê li hember DAIŞ'ê şer dikin û li Başûrê Kurdistanê jî li Şengal,Musil,Kerkuk,Zûmar,Rabîa,Sinûn û Cezayê jî pêş ve diçin.

Ajansa Ewlehî ya Rêveberiya Herêma Kurdistanê diyar kir ku di hefteya dawî de li bakurê Musilê 1500 kîlometrekare ax ji destê DAIŞ'ê hatiye stendin. Herwiha di daxuyaniyê de hatiye eşkere kirin ku herêmên Sehric ,Tel Xidir,Cemrûd û Aski Musil jî rizgarbûne. Operasyonên Hêzên Pêşmerge jî wisa hatin binavkirin:"Derba mirinê li DAIŞ'ê ket." Her wiha hat ragihandin ku êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Kerkukê hatine sekinandin û ji Zûmar,Rabîa,Sinûn û Şingalê jî xeberên serkeftinê jî tên.

DAIŞ'ê xwestibû bi dizî têkeve Mexmûrê, lê belê 70'ê kes ji wan hatine kuştin.Fermandeyê Pêşmerge yê Eniya Mexmûrê Şeyh Vasanî di derbarê serketina Pêşmergeyan de wisa got: ''Cesareta DAIŞ'ê nemaye li hember Pêşmerge rasterast şer bike.Ji ber wê dixwazin bi taktîka lêde-bireve li hemberî me şer dike."

"DAIŞ çekên kîmyewî bikartîne"

Serfermandariya Giştî ya Pêşmerge jî ragihand ku DAIŞ li eniyên şer têk diçe, dibeze û çekên kîmyewî bikartîne. Her eiha hat eşkere kirin kul i rojavayê bajarê Musilê gellek depoyên gaza klorê hatine avakirin û jiyana xelkê li herêmê jî di bin xetereyê deye. Serfermandarê Giştî yê Pêşmerge Cemal Mihammed di derbarê êrîşên kîmyewî yên DAIŞ'ê de axivî. Muhammed eşkere kir ku DAIŞ di çend rojên dawî de li herêma Herdaniya ya di navbera Musil û Şengalê de bi wesayîtên gaza klorî êrîşên bombeyî li hember Pêşmergeyan pêk tîne. Muhammed li ser êrîşên DAIŞ'ê rawestiya û wiha got: " Terorîst li ser gellek planan kar dikin. Hemû çekên di destê wan de hene li hember Pêşmergeyan bîkartînin."

Her wiha hat zanîn k udi encama êrîşa balafirên Amerîkayê yên li Musilê pisporê DAIŞ'ê yê çekên kîmyewî hatiye kuştin. Hat ragihandin ku Ebu Malîkê d encama êrîşan de hatiye kuştin ji bo Seddam Hisên jî kar kiriye.

## Angelina Jolie serdana êzdiyan kir



Qasîdê Qenciyê yê Neteweyên Yekbûyî ya Penaberan Angelina Jolie serdana Êzîdiyên di meha tebaxê de ji ber êrîşên DAIŞ'ê li ser Şengalê reviyabûn û li kampan cih bibûn kir. Jolie ji Duhokê bang li dinyayê kir ku zêdetirîn alîkariya wan Êzîdiyan bikin.Angelina Jolie her wiha got ku ji piştî serdana xwe ya dawî ji bo Îraqê 2 mîlyon zêdetir kes bêwar mane û Rêveberiya Herêma Kurdistanê ji bo penaberan bûye weke sitargehek. Jolie her wiha domand: "Ez dixwazim bang li hemû gelên cihanê bikim.Ev mirovane gellek mexdûr in ku hinek ji wan ji Sûriyê reviyane.Ji ber bûyerên Sûriyê nêzîkî 13 mîlyon mirov ji cihê xwe bûn.Di nav wan de nexweş jî pirr in.Divê raya nawnetewî ji bo alîkariya wan mirovan zêdetir xîretê bike

## Serfermendeyê Artêşa Kanadayê: Em heyranê Pêşmerge ne

Serdanên dîplomatîk ê n li Kurdistanê jî berdewam dikin. Pêşmergeyên herêmên ji hêla DAIŞ'ê ve hatine dagirkirin rizgar dike û li eniyên şer serkeftinan bi dest dixe jî dibin mijarê dîplomasiyê. Hewlêra di rojên rabirdû de gellek serokvezîr û wezîr ezimandibûn vê hefteyê jî Serfermendeyê Artêşa Kanada ezimand.

Şêwirmendê Encûmena Asayişa Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî, bi Serfermndeyê Artêşa Kanadayê Tom Lawson re li Hewlêrê civiya. Lawson anî ziman ku ew li hember terorê piştgiriya Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Hêzên Pêşmerge dikin. Lawson li ser peywendiyên Kanada û Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî rawestiya û wiha got: " Kanada li hember terorê piştgiriya Pêşmerge dike û xweragiriya pêşmerge muhîm dibîne. Bo vê hindê peywendiyên me yên xurt hene. Em bi heyranî serketinên Pêşmerge dişopînin."

Di hevdîtinê de berxwedanahevpar a li hember DAIŞ'ê û alikarî û xurtkirina peywendiyan hatin rojeve. Şêwirmendê Encûmena Asayişa Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî jî di derbarê operasyonên Hêzên Pêşmerge yê li hember DAIŞ'ê de agahî dan.Şêwirmendê Encûmena Asayişa Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî da zanîn ku pediviyên leşkerî yên Pêşmerge her tim hene û ew bi bi taqameniyên giran li hember DAIŞ'ê şer dikin. Barzanî her wiha eşkere kir ku pediviya Pêşmerge bi wesayîtên zirhî hene da ku li hember kemînên bombeyî yên DAIŞ'ê şer bikin. Barzanî wiha berdewam kir: " Li herêmê tenê pêşmerge serketinên mezin tomar dike." Her wiha hat zanîn ku Fermandeyê Artêşa Kanadayê û desteya pê re bi balafira C-17 ji Hêzên Pêşmerge re taqamenî û çek anîne.



www.arsivakurd.org

# Demokrasîyê Yunanîstanî



Nadire Güntaş Aldatmaz

Netîceya weçînitişê Yunanîstanî çend rojî yo Tirkîya û heme Ewropa gizgiznena ra. Wareameyîşê no erdlerzî de di sebebê bingeyînî estê. Yew tersê hukumatanê Ewropa, çike ê, Ewropa de hukumatêde hende radîqalî nêwazenê. Dide hêvîyê muhalîfan, hêvîyê sîyasetê çepî, hêvîyê ê ke qet îqtîdar nêgireto be xo dest, hêvîyê înan, hêvîyê xelesîyayîşî... Çiqas ke seba SYRIZA, seba Alexîs Tsîprasî pawitişode nîyanen, hêvîyode nîyanen bî kî, belîyo ke kesî SYRIZA ra gamade hende girse kî nêpawita. Coka erd hede zaf lerzeno.

Her kes serkewtişê SYRIZA û yê Alexîs Tsîprasî rê şaş bî, ez kî demokrasîyê Yunanîstanî rê şaş bîya. Çike kurdî, armenî, elewî, suryanî bi kilmî ê bînîyê ke hetê dewlete ra hemwelatîya xo meqbule nîya, çiqas ke ewro tenena sebest bê kî Tirkîya de hîna zaf kes, zaf çîyê xo nêşîkîno eşkera bikero. Yanî serbestîye çik a ke, ma vajî, êdî şîkînê ke qalê xo bikerê. Yanî şîkînê ke xo name bikerê, ziwanê xo name bikerê. No durum hîna zaf seba kurdan û elewîyan nîyar o. Seba ê bînan ancî durum eynî yo. Yanê ê bînî hîna kî nêşîkînê ke her ca de qalê etnîsîteya xo, qalê ziwanê xo, qalê bawerîya xo bikerê.

Heta demode nêzdî wextê rojeyê remezanî de kesê ke elewî yê, kesê ke rojeyê remezanî nêgênê û mîyanê muslumanan de ciwîyenê, wextê paşîve (sahur) de çila xo fîştêne re ci ke mevajê “nê roje nêgênê”. Bi no tore cîranê xo xapinayêne ke ê kî rojî yê. Çike înan cesaret nêkerdêne ke durumê xo yo rastken îzeh bikerê. Çike înan nêwaştêne ke teberê komele de biciwîye. Belkî hîna kî zaf ca de durum eynî yo. Hem perwerdeyê na dewlete hem çapemenîya na dewlete hem kî sîyasetê na dewlete ê bînî sey dişmenan lanse kerdî. Ê bînan kî qeyret kerd ke mîyanê komele de xo rê cayêk peyda bikerê. O ca kî ancax bi xo nimnayişî mumkun bî.

Eza ke omrê xo na welat de vîyarno ra, ez Yunanîstan de nîyadana û tabî ke ecebe de manena û eynî wext de heyran kî manena. Serekwezîro newe Alexîs Tsîpras vano ez ateîst a, dest nênano re kitabê bimbarekî ser û kitabî ser o sondî nêweno, wijdan û şerefê xo ser o sondî weno. Kes vengê xo nêvezeno. Merdimê dînî kî leye der ê û bi peşmirîyayîşî ey de nîyadanê. Verê çimanê dinya de teamulî pêro têser û têbin ra benê. Dinya nêrijîna, înancê her kesî xo rê maneno. Her kes vatena xo ra mesul o.

Gelo rojanê nîyanenan ma kî vînenîme? Ma rê kî demokrasîyode rastken nesîb beno? Çitur ke dîndarê maye muslumanî her ca de rehet rehet xo îfade kenê, goreyê înancê xo ciwîyenê û na heqe xo de vînenê, gelo ê bînî kî rojê na heqe xo de vînenê? Gelo rojê sîyasetmedaranê Tirkîye ra yew şîkîno vajero ez ateîst a.

Ez bawera ke mîyanê sîyasetmedaranê Tirkîya de zaf kes ateîst o. Labelê îtîraf kerdene rê hîna çend se serrê ma estê. Yew sîyasetmedarê Tirkîya ke bivejîyo û bivajo ez ateîst a se beno? Galîleoyî ke demo mîyanen de va dinya gilorin a se bî, o beno. Azîz Nesînî ke îmajode sey ateîstînî da se bî, o beno Belkî tenena bêtere bena.

Yew sîyasetmedarê Tirkîya ke bivejîyo û bivajo ez ateîst a se beno? Verê cû çapemenîya muhtereme yena re ziwan, bi maşetanê xoyê xasan merdimî rind afîşe kena. Ancî bahsê taxa muslumanan kena û bahsê taxa muslumanan de rotena guvelikî kena. Dima mehkemeyê muhteremî kewnê re raye. Dima sîyasetmedarê bînî her roj îzehat danê ke înancê komele deja yo. Ancî bahse înancê şaranê na welatî kenê, ancî vanê se de nêzana çiqasê xo musluman o, dima merdimê erdîşinî adir gênê re xo dest, seba veşnayene kewnê be raye, dima nat dotê welatî de kulike sipî peyda benê... Heta ke merdim nêşîkîya keyeyê xo ra bivejîyo, heta ke domanê merdimî nêşîkîyay şerê mekteban, heta ke cinîya merdimî nêşîkîye şero leyê cinîyanê bînan, heta ke heyatê merdîmî yo sîyasî nêqedîya û belkî heta ke merdim nêkewt be hepisxane, nê îzaehetî, nê manşetî nîya dewam kenê. Yanî bedelê qiseykerdene, bedelê xo îfade kerdene, bedelê rastîye Tirkîya de zaf giran o. Merdim şîkîno ke no bedel bidayo?




Tirkîya de gereke merdim xo binimno. Gereke tim di rîyê merdimî bibê. Gereke yew fikrê xoyo rastkeno ke ci rê wayîr o, o bibo yew kî o yo ke verê şarî de bivajo o bibo. Yanî gereke di yemê merdimî bibê. Yemê verî sey vatena şarî bibo, yemê peyî sey vatena xo bibo. Gereke merdim zureker bo, sextekar bo. Merdimo nîyanen meqbul o.

Yunanîstanî bi weçînitişê xo yo pêyenî heme teamulî têser û têbin ra kerdî. Ez zaf hêvîdar nîya la ez wazena ke a ke Yunanîstan de ewro bîya meşte ma de kî bibo.

www.arsivakurd.org



# Mozaîk, mauzem û kırmanckî



Ma ke pencereya kurdkî ra biewnîmê vînemê ke weşanî, programî, kursî, beşe kurdolojîyî, her çiqas problemê xo bibê zî dersa weçinite ya kurdkî û sewbîna aktîvîte û wareyê kurdkî vera vera zêdîyenê. Merdim eşkeno vizêr û ewroyê kurdkî û na babete de qewimîyayîşanê aktuelan ser o zaf çîy binuso, tehlîlan bikero la derdê mi o nîyo. Ez wazena ke ewnîyayîşê şima biancî Unîversîteya Artukluyî ya Mêrdînî ser o. Belkî zafê şima vajê xora ma xebatanê kurdkî yê na unîversîte ra xebardar ê. Seke şima zî zanenê beşe kurdolojî yo tewr veren na unîversîte de amey ronayene. Û reyna beşe kultur û ziwanê kurdan yê programê lisansî û lîteraturê dinya de reya verêne bi perwerdeyê dûrî kurdkî (kurmanckî-kirmanckî) musnayîş zî bîy nesîbê Unîversîteya Artukluyî.

Nê rojanê peyênan de Merkezê Perwerdeyo Dûrî yê Unîversiteya Artukluyî (Mauzem) gamêka neweye rê îmza eşte. Kîşta kursanê kurdkî de (kurmanckî-kirmanckî) qerar da ke ziwananê sey erebkî, suryankî, aramkîya kitabe muqadesî, îbrankîya moderni, îbrankîya kitabê pîrozî, latînkî û grekkî de zî kursan akero. (Îlanê nê kursan keyepelê sazgehî de weşanîyayo.

(http://mauzem.artuklu.edu.tr/) Kursê nê ziwanan akerdiş mi gorê ruhê eslî yê şaristananê na coğrafyaya qedîme rê resayîş o. Ez bawer kena û bi hêvî pawena ke demo ameyox de inşallah sey armenkî, lazkî û sewbîna ziwanê nê welatî rê zî kursî bêrê akerdiş. Heta nika nêbîyayîşê nînan tohmet û eybê mezgê xo mermerênan o. Nê kursî helbet bes nîyê. Heta ke no welat de sîyasetê resmî yê zafziwanîyê nêro îcrakerdiş xelisîyayîşê ziwananê binan mumkin nîyo. La no nîno na mana ke ma heta ê rojan bipawîmê. Halê lehçeya kirmanckî xora meydan de yo. Kirmanckî vera vera cuya rojanê yê kurdê kirmancan ra vejîna. Vera ney de mucadele dayene, seba pay ra mendiş û averşîyayîşê kirmanckî xebat û aktîvîteyan kerdene tena aîdê ê kesanê ke pê kirmanckî nusenê, aye ser o xebitîyenê û tehsîlo berz vînenê nîyo. Na berpirsîyarîyê ê heme qiseykerdoxanê na lehçe ya.

1996 bî. Programêkê televîzyonî de duştê parlamenterêkê birûmetî yê kurdan de wina vatibî suretêkê tarî yê sîyasetê tirkan. Serrî derbaz bîy. Rîyê mermerperestîye ra bi hezaran merdimî kişiyayay. La se bî? Mermer şikîya, şî. Xora no ‘’qederê mermeri’’ bî. Çunke tu quwet nêeşkeno vera rastî û heqdarîye de vindero. Rew bo erey bo rastî û heqdarîye helbet werîyenê. Tirkîya êdî rastîya xo vînena. Neke tena kurdî heme şarê Tirkîya reng û neqşanê ziwan û kulturanê xo vînenê. Kîşta kurdkî de (kurmanckî-kirmanckî) lazkî ra bigîrîn heta pomakkî kursî abenê, weşanî neşr benê.

Heta ke yew şar/ komel ziwanê xo rê bi hewayo pratik wayîr mevejîyo merdim nêeşkeno xelisîyayîşê ziwano ke rewşa xo krîtîk aseno ra behs bikero. Heto bîn ra kesê ke kirmanckî ser o xebitînê, weşanan vejenê, perwerdeyê akademîkî vinenê ganî di çîy xo rê sey wezîfeyê lezkanî bivînê. 1) Mîyanê komelê kurdê kirmancan de nuştiş û wendişê standartî yê kirmanckî geş kerdene û 2) Arêkerdiş û weşanayîşê çîyanê folklorîkî yê kirmanckî kerdenê. Çarçewaya madeya yewine de perwerdeyo vila (bi tirkî: yaygın eğitim) avantajêko gird îfade keno. Ma bi nê metodî neke her bajar, qeza û dewa welatî eşkenê biresê her cayê cîhanî. Heme mensubê komelê ma eşkenê cayo ke ser o ciwîyenê ra nê îmkanî ra îstîfadê bikerê. Kursê Durî yê Unîversîteya Artukluyî seba ma kirmancan û kurmancan ensturumanêko bêemsalî yo perwerdeyê vila îfade keno, ganî ci ra bêro îstîfade kerdiş. Mend ke ma ganî rewşa pozîtîf û reelan ra tim îstîfade bikîmê. Çunke semedê kirmanckî (zazakî) îmkanê winasîyî qiymetê awa cuye de yê.

Ma kê biagêrîn kontekstê pêroyî ez vana kursê Perwerdeyê dûrî yê Unîversîyeya Artukluyi demo ameyoxî rê pencerayêk akerdiş o. Ferasetê Mauzemî derheqê ‘’Tirkîyaya neweye ya rastikêne de’’ îlham dano. Zaferê tirkan çi heyf ke tebere tirkî û kulturê tirkan de hema-hema çîyêk rê tehammul û rûmet nêmusnenê. Nimûneyêk lazim bibo; ez bi xo vîst serrî ra zêdêr Îzmîr de ciwîyaya. Ruhê faşîstî ê komelkî yê Îzmîrî weş zanena. Her veyveyî ra dima marşê “serra desine” hema zî êno piro dayene, her reaksîyonê kurdan ra pey beyraqa sûre û sipîye dardê kerdene refleksê hîsterîkî yê tirkanê Îzmîrî yê. Nê tewir aktîvîteyê zaf ziwan û kulturîyî hem tesîranê winasî yê nijadperestîye rê hem zî ferdanê ke hetê kultur û ziwanê xo ra bi gazê hersî yê deste mutecawizkaran mexdûr bîyê rê honikîya baweşînke danê hîs kerdenê. Aye ra no proje ganî tena sey faaliyetêkê kursê ziwanî nêro hesibnayîş.

Backgraundê nê projeyi nêvînayene tengîya ewnîyayîşî ra wetêr vizêr û meşteyî wendişî de estena kemaneyan dîyar keno. Bê naye tayê çîy û qewîmîayîşî estê ke hetê felsefe û mana ra qaso ke asenê ra zêdêrî parametreyan nimnenê. Mi çim de kursê Mauzemî nînan rê sey nimûne bêro dayiş mubalaxa nêbeno. Xulasa nê kursî heyecan û hêvîya mi zêdnenê.



Cu (heyat) zaf renginî, zaf çeşidîyenî ra îbaret a. Zaf ziwan û kulturkîyîya beşerîyetî zî temaya cuya biyolojikî ya cîhanî temam kenê. Bêguman na zengînîya merdimahî rê sembolo tewr rind mozaik o. Û welatê ma de mermer şikîya mozaîk bi heme rindekîya xo vejîyeno meydan. Nika cuya rojane de dora senfonîya mozaîkî ya. Ez hêvî kena ke senfonîyê mozaîkî, her cayê Tirkîya, Kurdistan û heme Rojhelatê Mîyanênî ra bêro eşnawitiş.

# PDK'yên Bakur wê yek bibin?

**Salih Batırhan**

Yekgirtina hêzen kurd a ku li Rojhilat Başûr û Rojavayê Kurdistanê li hember DAIŞ'ê didome arîşeyên di navbera partiyên kurdan de ji holê radike û wan nêzîkî hev dike. Partiyên Bakurê Kurdistanê yê binemala Partiya Demokrata Kurdistanê yên ji ber bîrên cûda ji hev qetiyabûn jî li ser yekîtî û hevgertinê destbi komcivînan dikin. Însiyatîfa Yekitiya Partiya Demokrata Kurdistanê li Bakur a ku ji hêla siyasetmedar û demokratên kurd pêk tê, ji bo partî û siyasetmedarên Partiya Demokrata Kurdistanê ya Tirkiyê nêzîkî hev bike û wan bigihîne hevdû komcivînan dike.









Berdevkê Însiyatîfa Yekitiya Partiya Demokrata Kurdistanê Ahmet Acar, Serokê Partiya Demokarata Neteweyî ya Kurdistanê Şemşid Firat, Serokê KADEP'ê Lütfü Baksi, Serokê Partiya Azadiya Kurdistanê Mustafa Özçelik û Serokê Partiya Demokrata Kurdistana Tirkiyê Mehmet Emin Kardaş di derbarê yekitî û komcivinan de ji rojnameya BasNûçeyê re axivîn.

### 'Em dixwazin yekrêziya xeta neteweyî ava bikin'

Berdevkê Însiyatîfa Yekitiya Partiya Demokrata Kurdistanê Ahmet Acar, behsa komcivînên xwe kir û anî ziman ku gellek rewşenbîr û demokratên kurd beşdariyê li civînên wan dikin û ew êdî dixwazin cudahiyên di navbera Partiya Demokrata Kurdistanê de heyî de bi dawî bikin. Acar her wiha anî ziman ku ew bi gellek partiyên Bakurê Kurdistanê re rûniştine û di navbera wan de guftûgoyên erênî pêk hatine. Acar, wiha berdewam kir: "Di dehê meha çileyê de me li Midyadê civînek li darxist Ew civîna me ya ewil bû. Di nav me de gellek siyasetmedar û rewşenbîr û nivîskar jî hebûn. Em dixwazên kesê nêzikî Partiya Demokrata Kurdistanê ya kevn nêzîkî hevdû bikin û dawiyê li cidahiyan bînin. Em dixwazin yekrêziya xeta millî û netewî bikin yek. Em bi Partiya Demokrata Kurdistanê Tirkiyê, Partiya Demokrata Neteweyî ya Kurdistanê û Platforma Demokrata Kurdistanê re rûniştîn. Guftûgoyên pozîtîf di navbera me de pêk hatin"

### Xebatên kongreya yekîtiyê

Acar anî ziman ku wan serdana Partiya Azadiya Kurdistanê jî kiriye û bi dilgermî hatine pêşwazîkirin lê ew bi Hak-Par û HDP'ê re rûneniştine û serdana wan nekirine. Acar her wiha ragihand ku ew ê partiyên nû ava nekin û di bin sîwana partiyeke heyî de li hev kom bibin. Acar wiha got: "Em bi HDP'ê û Hak -Par'ê re rûnenîştine. Helwesteke me ya wisa jî tuneye. Em bi partiyên nêzîkî xeta neteweyî re rûdinên. Em nabêjin em ê partiyeke nû ava bikin. Em bangawaziyê li xeta neteweyî dikin, em civînan dikin, em dibêjin partiyên me ji xwe hene. Em kongreyekê li dar bixin û di bin sîwana partiyekê de li hev kom bibin û yekîtiya xwe ava bikin."

### Pîrozbahî li partiyên Rojhilatê Kurdistanê

Berdevkê Însiyatîfa Yekitiya Partiya Demokrata Kurdistanê Ahmet Acar, her wiha eşkere kir ku heta niha Partiya Demokrata Neteweyî ya Kurdistanê û Partiya Demokrata Kurdistana Tirkiyê pêşniyarên wan qebûl kiriye û amadekariyên yekitiyê dikin. Acar, eşkere kir ku tenê Serokê Platforma Demokratên Kurd Sertaç Bucak pêşniyarên wan qebûl nekiriye û xwe neda ber pêşniyarên wan û persivên neyenî dan wan. Acar komcivînên Hizba Demokrata Kurdistanê û Partiya Demokrata Kurdistana Îranê jî bibîrxist û wiha axaftina xwe wiha bidawş kir: " Em ji yekitiya partiyên Rojhilatê jî gellekî kefxweş in. Xelkê me jî ji xwe vê dixwaze. Xelkê me jî çave reyî vê yekê ye. Em civinên Partiya Demokrata Kurdistana Îranê û Hizba Demokrata Kurdistanê jî pîroz dikin."

### Baksi: HDP bereya parastina demokrasiya Tirkiyê ye

Serokê KADEP'ê Lütfü Baksi, behsa xebat û komcivînên Însiyatîfa Yekitiya Partiya Demokrata Kurdistanê kir û eşkere kir ku ew ji xebatên însîyatifê kêfxweş in û ew ji bo avakirina yekîtiyê amadene. Baksî di dirêjahiya axaftina xwe de eşkere kir ku li Bakurê Kurdistanê du bereyên siyasî hene û bereyek xeta Kurdistanê yê û bereya din ji bereya parastina demokrasiya Tirkiyê ye. Baksî wiha berdewam kir: " Hevkar û rewşenbîrên me li hev civiyane û ji bo yekitiya me komcivînan li dar dixin. Em komcivînên wan gellekî baş dibînin. Ev helwesta wan rêaksiyona gelê kurde jî. Li Bakurê Kurdistanê du bereyên siyasî hene. Bereyek parastina Kurdistanê dike em di nav wê bereyê dene. Bereya din jî parastina demokrasiya Tirkiyê dike. Ew bere jî HDP ye. Xelk ji vê bereyê acizbûne. Em nebin yek em jî nikarin muxalefeta HDP'ê bikin. Di siyaseta Bakurê Kurdistanê de valahiyek mezin heye."

### Însiyatîf tifaqê pêk tîne

Serokê Giştî yê Partiya Demokrata Kurdistana Tirkiyê Mehmet Emin Kardaş jî eşkere kir ku gellek hevalên wan di xebatên siyasî de cih nedigirtin û xwe bi paş de vekişandibûn û ji cihêbûna wan aciz bibûn. Kardaş her wiha eşkere kir ku niha ew hevalên wan bûne însiyatif dixwazin wan bigihînin hevdû û tifaqekê di navbera wan de ava bikin. Kardaş proseya destpêkirina danûstendinan wiha anî ziman: " Hinek heval hatin û gotin em ê yekitiyê ava bikin. Li Midyada Mêrdînê û Batmanê civîn li dar xistin. Min ji wan re got ez amademe bi hemû partiyên kurd re rûnem."

### Kardaş: PDNK, PDK-T û KADEP'ê li hev kiriye

Mehmet Emin Kardaş, her wiha diyar kir ku Serokê Platforma Demokratên Kurd Sertaç Bucak bersivên erênî nedane însiyatifê û ew yekîtiya demokratên Kurdistanê naxwaze. Kardaş wiha bi dawî kir: "Serokê Platforma Demokratên Kurdistanê bersivên erênî nedane. Heta niha me PDK-T'yê KADEP'ê û PDNK'ê me li hev kiriye. Komcivînên me berdewam dikin. Em digihên encamekê.

### Partiyên kurd berjewendiyên xwe diparêzin

Serokê Partiya Demokrata Neteweyî ya Kurdistanê Cemşid Firat jî ragihand ku perçebûn û belavbûna hizbên kurdî ji Kurdistanê xizmetê re nake û wan bêhtir lawaz dike. Firat anî ziman ku gellek partî ji bo berjewendiyên partiyên xwe siyasetê dikin û Kurdistanê naparêzin. Firat li ser komcivînên yekitiyê jî rawestiya û wiha got: " Lazime demokratên Kurdistanê hevdû bigrin û yekîtiyê ava bikin. Em yekîtiya miletê kurd diparêzin. Heweceye partî nedin ser berjewendiyên xwe, berjewendiyên Kurdistanê biparêzin."

### Hewcedariya azadîxwaz û demokratên kurd

Serokê Giştî ye Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) Mustafa Özçelik anî ziman ku weke ew xebatên Însiyatîfa Yekitiya Partiya Demokrata Kurdistanê gellekî muhîm dibînin û ew serketinê ji wan re dixwazin. Özçelik her wiha daxuyand ku hewcedarî bi demokrat û azadîxwazên Kurdistanê j heye û ew jî, ji bo azadiya Kurdistanê amadene alikariya hemû partiyên siyasî yên kurd bikin.

### 'Hewcedariya kurdan bi yekitiyê heye'

Mustafa Özcelik, siyaseta HDP'ê jî rexne kir û anî ziman ku siyaseta demokratikkirina Tirkiyê keda partiyên kurd lawaz dike û ji kurdan re nebaş e. Ozçelik axaftina xwe wiha domand: "Bila eniyeke azadixwazên kurd bicive. Hewecedariya kurdan bi azadî û yekitiya hev heye. Partiya Azadiya Kurdistanê li ser vê yekê kar dike. Em siyaseta demokratîkkirina Tirkiyê nebaş dibînin. Ew siyaset keda kurdan lawaz dike. Divê siyaseta azadiya Kurdistanê bê parastin."





# KBY û Tirkiyê ber bi hevkariya stratejîk!




**Abdulhakim Günaydın**

Têkiliyên Kurdistan û Tirkiyê her ku diçe ber bi qonaxeke cudatir ve diçe. Elaqeya dualî ku qezencên hevpar di xwe de dihewîne, li ber şert û mercan guherînan bi xwe re tîne. Tirkiye, di çarçoveya polîtîkaya xwe ya dîzaynkirina Rojhilata Navîn de, Kurdistanê ji xwe re weke partnereke esasî û dîrokî dibîne. Herwiha xeta Barzanî jî, ji bo aştewaya li gel neteweya Kurd rêgeya herî maqûl û tekane qebûl dike.

Tecrubeya Yavuz Selîm û Mela Îdrîsê Bidlîsî, wekî stratejiyeke bidestxistina serweriya Şarqê, wekî têbîniyekê li ser maseya Erdoğan e. Erdoğan, mîrateya bav û kalan daye ser pişta xwe û destê aştewayî û pêkvejiyanê dirêjî Kurdistanê kir. Loma jî ew têkiliyên sar ku heta berî 5-6 salan jî herdu alî ji keviya şerekî dijwar zivirandin, bi carê germ bûn.

Têkiliyên dewletan yan jî du aliyên xwedî statu, li ser prensîb û distûrên îtîqadî nameşe. Ev cure pêwendî zêdetir xwe li berjewendî û qezencan datîne. Vêca eger ew berjewendî û qezenc hevbeş be, îhtimal e ku bigere dostaniyeke tarîxî jî. Belê gava pêşî li ser vî esasî nayê avêtin û biryara dawîn jî ji ber vê sedemê nayê derengxistin.

Problema Kurdan di serê sedsala bîstan û yekem çarîka wê de, paşguhkirin an jî miqetenebûna li vê prensîbê ye. Kurdan bi peymana Mela Îdrîs û Yavuz Selîm, muxatebiyeta alemê bidest xist. Bi saya vê danpêdanê (î'tîrafê) ji 300 salan zêdetir hukim li ser axa xwe kir. Çanda, edebiyat, ziman, dîrok, folklor û siyaseta wê geşe xwar. Piştî têkçûna vê peymanê bi awayekî yekalî jî, bi qedera xwe razî bûn û dane ser rêya lazim.

Ji ber ku eqliyeteke dûrbîn an jî bi rewşa heyî re guncaw li ser serkirdeyên Kurd ne zal bû, li ber nîrên dagirkeran pirtûbela bûn. Sedemê vê ya bingehîn jî dûrketina ji li xwe vegereke siyasî û tênegihîştina îradeya pêşewayekî bû.

Di roja îro de, kesayetê sereke û tekane yê ku îradeya siyasî û polîtîk di qada navneteweyî de temsîl dike xeta Barzanî ye. Barzanî, ji hêla alemê ve wekî serokê tabiî ji bo neteweya Kurdan tê qebûlkirin. Loma jî muxatebê Emrîka ji bo lêdana Kobanê Barzanî bû. Ev jî digereke bibal yasalîte û cîbicîbûna qebûleke pratîkî.

Têkiliyên dewleta Tirkiyê, hetanî sala 2008'an jî bi Kurdistanê re li ser axatî û xulamtiyê ava bibû. Lê piştî guherîna eqliyeta dewletmendên Tirk, salên piştî wê ji bo rêxweşkirina hevalbendiyeke stratejîk pozisyoneke gelekî pozîtîf leyistin.

Li gel dagirkirina coxrafyayeke berfireh ji dewleta Sûriyê û Iraqê, rêxistina ku ji hêla hemû cîhanê ve wekî terörîst tê dîtin berê xwe da Kurdistanê jî. Çaverênekirin û qelsbûna ji hêla çekan ve Pêşmerge bi şikestineke demkî re rûbirû hişt. Êrişa DAIŞ'ê ji bo Pêşmerge ne tiştekî di nav texmînan de bû. Lewra şer wekî şerê sunnî û şîiyan dihate xuyan...

Helwesta Tirkiyê li ser vê bûyerê, ji bo serkirde û rêvebiriya Kurdistanê bû sedemê sukûtî xeyalê. Lewra Kurdan çaverê dikir ku Tirk bi hana wan ve werin û li dijî êrişa bihêz a DAIŞ'ê destê arîkariyê dirêjî wan bike. Lê ev hêviyên serkirdayetî û xelkê Kurdistanê bicî nehat. Tirkan arîkariya pêwist nekir. Kurdan, li ser zarê Neçirvan Barzanî, Sefin Dizeyî û Fûad Huseyin ev aciziya xwe bi gelek wesîleyan anîn ziman. Tirk, ji ber siyaseta Erdoğan a nediyar rastî nerazîbûneke xeternak hatin. Lewra ew polîtîkaya wê ya ku digot "bi cîranan re sifir problem" hilweşiyabû. Nava wê û hemû cîranan sar bû. Tenê Kurdistan wekî cîranê dost dest de mabû. Herwiha, lixwewerqilîneke nisbî çêbû û fikra ku tenê bi kurdan re dikarin di Rojhilata Navîn de bibin xwedî gotin, dîsa li ser siyasetê zal bû. Azadbûna dîlên wê yên di destê DAIŞ'ê de jî firsenda ku têkiliyan dîsa bigerîne halê berê çêkir.

Lê dîsa jî dilgiraniya Serokê Herêma Kurdistanê ji helwesta Tirkiyê ji her aliyî ve diyar bû. Li ser vê, Tirkiyê avabûna hikûmeta nû li Iraqê jî firsend zanî û giraniya xwe da ser wê yekê ku careke din mutmaneya Kurd bistîne. Davutoğlu seredana Hewlêrê kir. Leşkerên Tirk, perwerdekirina Pêşmergeyan girte ser xwe. Lez dane kampên penaberan. Herî muhîm jî rê dan ku Pêşmerge ji bo arîkariyê here Kobanê. Bi vê yekê ew cemeda heyî, helîn bi xwe re anî.

Wekî gaveke di çarçoveya peydakirina mutmaneyê,vê heftiyê Şêwirmendên Serokwezîrê Tirkiyê Ahmet Davutoğlu, li gel akademisyen, rewşenbîr û pisporên dosyeya kurdî li paytexta Herêma Kurdistanê têkiliyên kurd, tirk û Herêma Kurdistanê xistine ber guftûgoyê. Dîdarên Tirkiye-PKK û peymanên ku hatine girêdan bi eşkereyî li ber çavan raxistin.

Mebest ji raxistina van peymanan li ser maseyê, ew bû ku kartên xwe yên der barê Kurdistanê de hinekî din eşkere bikin.

Lîsteya beşdaran gelekî qelew bû. Şêwirmêndên sereke yên Davutoğlu Hatem Ete, Etyen Mahçupyan, akademisyen Mesut Yeğen, Vahap coşkun, Galip Dalay û Mesut Özcan qala têkiliyên Kurdistanê û Tirkiyê kirin. Herwiha ji bo çareseriya meseleya kurdan nêrînên xwe derbirîn. Ligel van siyasetmedar Haşim Haşimi, karsaz Rênas Elçî û mafnas Yılmaz Ensaroğlu jî di bername bi sernavê "Tirkiye, Kurd û Rêvebiriya Herêma Kurdistanê" birêve çû. Enstîtuya Lêkolînê ya Rojhilata Navîn (MERÎ) li ser dan û stendinên aborî, siyasî û civakî sekinîn.

## Pêvajoya Çareseriyê hat nirxandin

Cîgirê Serokwezirê Herêma Kurdistanê Qubad Talabanî, Serokê Diwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Fuad Huseyin, Berdevkê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Sefîn Dizeyî, Berpirsên Têkiliyên Derva yên Yekîtiya Niştîmaniya Kurdistanê (YNK) Sadî Pîre û Partî Demokrat a Kurdistanê (PDK) Hêmin Hewramî, Cîgirê Serkomarê Iraqê Ferhad Eleddîn, Parlementerê Kurd li Bexdayê (yê berê) Şoreş Hecî, Şêwirmendê Wezereta Samanên Siruştî ya Herêma Kurdistanê Se'd Sadullah û rojnamevanê kurd Hiwa Osman jî di bernamê de axivîn.

Berpirsên Kurdistanê, para pirtir giraniya xwe dane ser têkiliyên tarîxî yên kurdan û tirkan. Polîtîkaya Tirkiyê ya li ser înkarê avabûyî dan ber rexneyan. Ew helwesta neyênî û pêkutiya dijwar a li hemberî neteweya kurd dabaşa axaftinên Talabani, Dizeyî û Pîre bûn.

Li aliyê Tirkiyê jî, şêwirmendan fikr, nirxandin û tehlîlên xwe bi awayekî vekirî danî ser masê. Hatem Ete ku yek ji şêwirmendê sereke yê Davutoğlu ye, behsa dîdarên PKK û dewletê kir. Pişt re jî sedemê têkçûna pêvajoya Osloyê ji beşdaran re ronî kir. Ete li ser vê babetê wiha got: "Ji ber ku PKK'ê di mijara xweseriyê de israr kiribû û Tirkiyê jî bersiveke erênî nedabû pêvajoya Osloyê bidawî bû" Pişt re jî qala merheleyan kir û eşkere kir ku "pêvajoya çareseriyê pêvajoya bêçekkirinê ye. Ya rast ev pêvajo li ser soza Öcalan ku gotibû dê PKK çekan deyne, hatibû destpêkirin. Daxwaza xweseriyê parçeyekî Pêvajoya Çareseriyê nîne."

Şêwirmendan qala pêvajoya çareseriyê li Tirkiyê kir û bi awayekî dane fêmkirin ku Barzani, dikare di vê qonaxê de bibe faktorekî çalak. Lewra armanca Tirkiyê ya sereke bêçekkirin û dersînorkirina PKK'ê ye. Ango pêvajo, pêvajoya çareserkirina kêşeya PKK'ê ye. Meseleya kurd, an jî Kurdistanê ne dabaşeke dan û stendinan e. Berê hevokên Hatem Ete li vê xalê bû. Tirkîiye dixwaze problema kurdan di nava xwe de bi awayekî esasî çareser bike da ku jê re nebe asteng. Lewra, îddia û projeyên Erdoğan li ser Şarqê muhtac û mecbûrî îradeya kurd e. Ne netew û xelkê kurd, îradeya kurd. Projeya Bidlîsî û Selîm tam di vê nuqteyê de xwe beloq dike û derdikeve pêş.

www.arsivakurd.org




# Çewlik Bajarê serhildêr

Bajarê Çewlikê li Bakûrê Kurdistanê li heremeke stratejîk cîh digre. Xaka Çewlikê wek pîreke ku sê eyaletan digihîne hev. Bajêr di nav Amed, Serhad û Dêrsîmê de ye. Xakên her sê eyaletan ji quntarên çiyayên Çewlikê destpêdikin.

Çewlik di nav hêlîlarên 41 û 39 û di nav hêlîpanên 38 û 40'an de cîh digre.

**Erdnîgar**

Pîvana xaka bajêr 8.319 km2 ye. Erdnîgara bajêr ji % 83.3 çiya, ji % 2,3 deşt, ji % 2,7 zozan û ji % 11,7 jî ji platoyan pêk tê. Ji % 50,7 xaka Çewlikê ji kiştûkalê re dibe.

Çiyayan Çewlikê li seriya 2 hezar metreyî bilindin. Ev bilindahî bi piranî berdewama sîlsîleyên çiyayên Çewlikê ne. Di çiyayên Çewlikê de noqta herî bilind Çiyayê Serçêlik e ku 3008 metre bilind e. Çiyayê Şeytan (2906m), Çiyayê Cotela (2940m), Çiyayê Çawreş (2246m), Çiyayê Karîr (2373m), Çiyayê Qeregol, Çiyayê Şerefdîn û Çiyayê jî çend ji çiyayên Çewlikê ê navdayî ne.

Zozan û platoyên çiyayên Çewlikê jî navdayî ne. Van zozanan bi piranî li ser Çiyayê Şerefdîn cih digrin. Çarkawya, Bezirgana, Qendîl, Mêrgemîr, Masla û Meydana Şeref ji van zozanan e. Bilindahiya zozanan digîjin heta 1500 metreyî, zozanên herî naskirî; Bazirgan, Qandîl, Mirgemir û Masla ne.

Çiyayên Çewlikê di demên kevn de bi piranî dahl û daristan bûn. Piştî destpêka şer, Artêşa Tirk li Çewlikê bi sedan kilometreqare daristan şewitand. Ji bilî heremên daristan, rûyê van çiyayan tev mêrg û mexerin.

Li ser xweza û lawirvaniya Çewlikê hin efsane jî hene. Yek ji wan Çîroka Şarik û Şivan e. Şarik û Şivan dû bira bûne. Li bajarê Amedê, şivanên axayekî bûne. Rojek axa hîsdike ku ji pezên wî bîhna Çiyayên Spî yê Çewlikê tê. Şivana dişopîne. Dibîne ku ew piştî ji gund derdikevin, tevî keriya xwe dibin moz û difirin diçin zozanên Çewlikê. Axa bi hespê xwe li pey wan diçe. Dema li keviyên Çiyayê Spî rasti hev tên herdû şivan wenda dibin û cardin kes wan nabîne. Îro li quntarên Çiyayê Spî xirabeyên mizgeftekî bi munasebeta vê efsaneyê hîn jî wek ziyaret tê bikaranîn.

**Deşt**

Ji axa Çewlikê tenê % 2 deşt e. Van deverên rast jî bi piranî li keviyên Çemê Mûradê ne. Deşta Çewlikê li rojhilatê başûrê bajêr dikeve. 80 km² fireh e. Deşta Darahênê nêzî heman navçeyi ye. 60 km² fireh e. Deşta Goynik jî 26 km firehe û li rojhilatê Çewlikê dikeve. Di van deveran de kiştûkala bejî tê kirin û berhemên wek genim û ceh tên çandin.

Piştî ku li Mazra û Mûşê fabrîqayên şekir vebûn, li Çewlikê jî hin malbatan silqê çandin. Lê ji ber avdan û tesîsên din tûne ye, hilberîna silqê kême û di mercên zahmet de tê kirin.

**Maden**

Di xaka Çewlikê de li nezî Navça Darahênê madenên hesin, li nêzi Kanîreşê jî çavkaniyên lînyît hene. Li nêzî Çemê Xanekê jî hin rezerwên zêr hatine tesbît kirin. Lêkolînêran di lêgerînên li ser axa Çewlikê de rastî madenên wek kaolîn, hesin, fosfat, avên mîneral û gelek germavan tesbît kirine. Heta niha ji van dewlemendiyên Çewlikê zêde sûd nay vergirtin.

**Çem**

Dû çemên sereke ku ji xaka Çewlikê derbas dibin, Mûrad û Perî ne. Mûrad ji alî Mûşê ve dikêve nav axa Çewlikê. Piştî ku seranserê Çewlikê dirêj dibe, li Gêncê ji xaka bajêr derdikeve û berê xwe dide Mazrayê. Ava Perî ku ji alî Erziromê ve dikeve Çewlikê di nav xaka Gêxiyê de digere û berê xwe dide Dêrsîmê.

**Gol**

Navekî Çewlikê jî Bîngol e, yanê 'hezar gol' e. Ax û çiyayên Çewlikê seranser nawazeyên xwezayî ne. Ev gol yek ji van newazeya ye. Li ser vê golê gireveke seyar heye ku di nav avê de digere. Mixabin ji ber ku kes lê xwedîtî nake, ev newaze ber bi tunebûnê ve diçe.

Cemedên kevnare ê serê lûtkeyên çiyayan, di demên paşin de bûne sedema peydabûna van golan. Gola herî mezin li Çewlikê li Navça Goniyê Gola Behrî ye. Derdora golê carna qasî 7 km² fireh dibe. Ji bilî vê golê Gola Zirlir, Gola Sar, Gola Teyran, Gola Haren, Gola Manastir, Gola Bellî û gelek golên din jî hene.

**Nav**

Wek hemû bajarên Kurdistanê çîroka navê Çewlikê jî dirêj û ecêb e. Di demên herî kevn de navê heremê 'Abos Mons' bûye. Qasî ku çavkaniyên niviskî jî qeyddikin, navê herî kevn ji alî Ermeniyan ve li bajêr hatiye danîn. Wan ji heremê re digotin 'Sirmanç'. Ev nav di çavkaniyên Ereban de jî hebûye. Navê 'Çapaxçûr' jî ku li bajêr hatiye danîn, di pirtûkên pîroz de di wate ya, 'ava pakij' an jî 'ava bihûştî' hatiye bikaranîn.



Li gor bermayiyên Asûriyan jî, b.z navên wek 'Ûrarto, Sofen, Enzît, Naîrî û Bîanî' li heremê hatine danîn. Piştî ku Tirk hatin Kurdistanê, ji ber piraniya golên heremê ji 'Çewlikê' re, 'Bingöl', yanê 'hezar gol' gotine. Li ser vî navî hin efsane jî hene. Li gor efsanê, ji kahniya ab-i hayat, hezar golên vê heremê peyda bûne.

Ji aliyê din ve Kurdên heremê ji sed salan vir ve ji bajêr ve dibêjin, 'Çewlik' an jî 'Çolik'. Bajêr di salên 1800'an de bi navê 'Çewlik' wek Xopanke Paloyê bû.

**Dîrok**

Dîroka Çewlikê a nivîskî b.z di salên 1300'an de destpêdike. Piştî van salan li heremê pêla koçberî destpê dike. Alen, Saspir, Saka, Xaldî, Galat, Frîg, Aramî û gelek qewmên din dem dem hatine li heremê bicîh bûne. Hinek ji van miletan demek li heremê sekinîne, hinek jî di encama êrişên din de ji deverê derketine.

Di salên 700'an de b.z li heremê desthilatiya Asûriyan tê dîtin. Asûrî piştî ku ji alî Medan ve ji holê hatin rakirin, heremê girtin destên xwe. Piştî Medan Persî ketin heremê û piştî wan jî Romayî. Romayiyan p.z heta belavbûna Îslamê li heremê hukum ajotin. Di vê pêvajoyê de car caran di nav Selokîdan, Partan, Arasan, Romayî, Persî û Bizansiyan de li ser bidestxistina heremê şer derket.

Di salên 636'an de Artêşa Îslamê piştî şerê Qadisiye li Kurdistanê belav bû. Di vê navberê de Çewlik jî ji alî Ereban ve hat dagirkirin. Piştî van salan ber bi Kurdistanê pêlên êrişên nûh destpêkirin. Di salên 1200'an de Çewlik pêşiyê ji alî Selçûqiyan, paşê jî ji alî Moxolan ve hat dagirkirin. Di van deman de li heremê mirîtî hukum dajot.

Di salên 1400'an de Çewlik ket destê Aqqoyiniyan. Padîşahê wan Hesenê Dirêj, ji bo jina xwe Despîna li Darahênê ya Çewlikê qesrekî da çêkirin. Piştî ku Artêşa Osmanî, Aqqoyiniyan pelişand, Çewlik ket destê Şah Îsmaîlê Sefewî. Di şerê 1515'an de ku di navbera Osmanî û Sefewiyan de ku li deşta Çaldiranê qewimî, Kurdistan ji alî Osmaniyan ve hat dagirkirin. Helbet Çewlik jî. Wê demê navê Çewlikê ‚Çepaxçur' bû. Çepaxçûr, tevî Darahênê û Gexiyê sancax bû û bi Amedê ve girêdî bû. Nawenda sancaxê Darahênê bû.

Gêxî jî li heremê bajarê herî mezin bû. Li Gêxiyê 8 hezar xane hebûn. Nifûsa bajêr 50 hezar bû. Ji vê nifûsê 13 hezar Ermenî û Rûm bûn. Li bajêr 18 mizgeft, 12 dibistan û medrese û gelek dikkan û aş û pir û berhemên din hebûn.

Piştî ku parêzgeha Erziromê hat damezirandin, Çewlik tevî navçên xwe bi vir ve hat girêdan. Di van salan de nawenda bajêrê îroîn gundekî bû. Li gor hijmarên sala 1553'an 197 gund û 42 mezrayên sancaxa Darahênê hebûn. Nifûsa nawenda Darahênê di wê demê de 4120 kes e. Di salnameyên van deman de navê eşîrên kurd ê wek herema Oxçiyan, Şaxlû, Desemlû û Şukerlû jî derbas dibin.

Di heman salan de Navça Gêxî jî girîng bû. Gêxî bi dîroka xwe ya ku dirêjî dema Hîtîtiyan dibû dihat naskirin. Li ser rêya karwanan bû. Li gor Kamus-ul Alama Osmanî, wê demê hijmara rûniştvanên Gêxiyê tevî 217 gund û 15 xopanên xwe, 41 hezar bû. Gelekê vê nifûsê Ermenî bûn.

Ewliya Çelebiyê gerok ku di salên 1600'an de Kurdistanê ziyaret kir, di bîranînên xwe de behsa Çewlikê jî dike. Çelebî di derbarê Çewlikê de wiha dibêje Li rûyê erdê 148 çiyayên bilind hene. Yek ji wan Çiyayê Elbrûz e, ku çiyayên Çewlikê jî milek ji wan e. Li zozazên Çewlikê 70 mêrgên fireh hene. Ew zozan 7 meh bi însanan ve tijî ne.

Gelê Çewlikê ji eşîrên Kurdin ku her sal tevî 100 hezar pezî dertên zozanan. Van zozanên bixêrêbûr li Anatolya yê ê herî navdayî ne. Ewliya Çelebî bi peznên mezin behsa gol û masî û nebat û giyayên Çewlikê jî dike û dibêje ku; av û giyayên heremê wek derman dihat bikaranîn. Dîsa li gor ku Ewliya Çelebî neqldike, Îskenderê Zulqarneyn dema sefera xwe ku nexweş dikeve, tê Çewlikê û bi awên golên vira baş dibe.

Di dema salên şerê yekem de, nawenda Çewlikê wek 'Çapaxçûr' dihat binavkirin û wek qeza bi Darahênê ve girêdayî bû. Bi destpêka şer, Artêşa Rûs ku ji Cepha Qafqasan berê xwe dabû Kurdistanê, heta Gêxiyê hatibû. Di vê demê de Siltan Hemîdê Osmanî, li Kurdistanê ji eşîrên kurd alayên avakiribû. Dema ku Artêşa Rûs êrişê Çewlikê kir, eşîrên Zaza, Oxnut, Buxnî, Şaxgelî û Xormek ber li wan girtin. Di Çiyayê Şerefdîn û Çavreş de gelek pevçûnên xwîndar derketin. Eşîran kurd mehek liberxwe dan. Di encam de di Adara 1916'an de Osmanî li ber Rûsan pelişîn û Artêşa Çar heta Çewlik û Dêrsîmê hat. Leşkerên Rûs heta Şoreşa Bolşewîk a sala 1917'an li Çewlikê man û paşê vekişiyan.

Di salên Şerê Cîhanê ê Yekem de ku Dewleta Osmanî li dijî Ermenî û Suryaniyan dest bi qirkirinê kir, li Çewlikê jî ev siyaset meşand. Di van salan de bi taybetî li Navça Gexiyê hijmara Ermeniyan zêdebû. Di havîna 1915'an de li vê navçê di serokatiya Mîthat Tûranî yê zabitê Osmanî, Ermeniyên bajêr hatin techîr kirin û bi rê de hatin qetlkirin.

Di salên Şerê Cîhanê ê Yekem de li ser hemû xaka Osmanî ramanên netewî belavbûbûn. Împaratoriyên mezin perçe dibûn. Di şer de ku Împaratoriya Osmanî têk çû, wek netewên din welatparêzên kurd jî doza Kurdayetiyê bilin kirin. Rêxistinên wek Kürdistan Teali Cemiyeti hatin damezirandin. Di vê pêwajoyê de welatparêzên herema Çewlikê jî xwedî ked bûn. Wek mînak di nav damezrênerên vê rêxistina welatparêz de, mebûsên Darahênê, Mahmud û Mihemed Efendî jî hebûn. Xalid Begê Cibrî jî di Kürdistan Teali Cemiyeti de berpirsê rêxistinkirina herema Çewlik û Mûşê bû.



**Serhildana Şêx Seîd**

Çewlik di dîroka Kurdistanê de bi Serhildana Şêx Seîd tê naskirin. Rêxistina Azadi ku serhildanê birêvedibir, li Çewlikê ji şaxekî vekiribû. Berpirsê Azadî ê Çewlikê Tayip Elî bû.

Serhildan di Sibat a sala 1925'an de li Navça Darahênê li gundê Pîranê destpêdike. Di 16'ê Sibatê de ku serhildan diteqe, hêzên Şêx Seîd dikevin Darahênê û li derûdorê belav dibin. Herema Çewlikê li gor pîlanên serhildêra herema 3. tê binav kirin. Çebaxçûr, Gêxî, Solaxan û derûdorê ketibûn bin sehêtiya Şêxên Çanê, Mistefa û ÎÎbrahîm. Piştî êrişa ser Amedê ku hêzên serhilder biserneketin, zivirîn çiyayên Çewlikê. Di van çiyayan de di nav kurd û metîngeran de şerên mezin derketin. Serhildan ji ber kêmasiyên amedekariyê û bêwextbûnê piştî demekî têk çû. Şêx Seid û hevalên wî, di 27'ê Nîsanê ji Solaxa derbasî deşta Mûşê bûn û li ser pira Mûradê, di encama xiyanetê de hatin girtin.

Piştî serhiladanê ku Artêşa Tirk gihişt heremê, li Çewlikê qetlîamên mezin kir. Bi hezaran kes hatin kuştin, bi dehan gund hatin şewitandin. Herema Çewlikê ketibû nav tofanekî. Çekên destê gel hat topkirin, malbat û serekên eşîran, hevkarên dewletê jî tê de hatin sirgûn kirin. Li gor zagona, 'îskana mecbûrî' bi taybetî jî eşîrên derûdora Gêxiyê ê Elewî, ku hinek ji wan li dijî Serhildana Şêx Seîd li kêleka Kemalîstan cîh girtibûn, sirgûnê Îstenbol û Egeyê bûn û het efûya sala 1927'an li wir man.

**Yado**

Di van deman de Yado yê Çewlikî, ku ji alî hemdemên xwe ve wek ‚Qertelê Kurdistanê' dihat naskirin, piştî têkçûna serhildanê jî ji çiyayên Çewlikê derneket û êrişî hêzên artêşê kir û tevî şerwanên xwe gelek xesarên mezin da wan. Yado di sala 1927'an de bi bêbextî hat kuştin. Lê Yado nehat jibîr kirin. Gelê Çewlikê, navê Yado li kaniyekî kiriye ku ew 15 kilometre dûrî bajar e.

Dewletê, piştî tefandina serhildanê li Kurdistanê û li Çewlikê hin tedbîran sitend. Bajêr wê çaxê hîn bi navê ‚Çapaxçûr' dihat naskirin. Piştî damezirandina Komara Tirk di sala 1926'an de Çapaxçûr bi Mazrayê ve, di sala 1929'an de jî bi Mûşê ve hat girêdan. Di sala 1936'an de jî bi navê ‚Bingöl' û bi sînorên îro wek parêzgehekî hat veqetandin.

**Jiyana Rojane**

Piştî salên 1950'an ku rêya Mazra û Mûşê hat çêkirin û rêya hesin ji Darahênê û Solaxa derbasbû, Bajarê Çewlikê jî ket nav bazarê. Ji bilî firotina heywanan, berhemên lawirvaniyê jî di bazirganiya bajêr de cîhekî girîng digre. Şîr û pênerê Çewlikê li bajarê derûdorê tê firotan.

Çewlik bi rûyeki xwe yê din wek gundekî mezin e. Her roj bi hezaran gundî ji bo bazirganî, an jî ji bo karê rojane tên bajêr. Garajên gundan cîhê civandin û belavbûnê ye.



# Mîr Bedirxanê Xorasanê



Mehmet Gültekin

Jean Baillie Fraser neqil dike ku Şah Abbas di serdema xwe de biryar girtiye ku dora 40 hezar malbatên kurdan li Xorasanê cîwar bike ku ew wê herêmê li dijî tirkmanan biparêzin. Ji ber ku hin serokên kurdan bi wî bawer nekirine, nexwastine koçber bin. Lê dîsa jî Şah dora 15 hezar malbatan ji eşîrên wek Şadî, Keyvan, Qereman, Celalî, Reşî, Milan, Şêxemirî, Qereçorî, Laini, Zaxuri, Sevıka, Badilî, Topkan, Emari û yên mayîn koçberî Xorasanê kiriye, cîwarên bi çiya û deştan daye wan ku ew bikaribin wek li Kurdistanê pez-dewaran xwedî bikin.

Bi çûyîn-hatina salan kurdan li wir bi piranî 5 herêmên sereke wek mîrektî ava kirine. Seyahê Îngiliz Jean Baillie Fraser ê ku di sala 1822 an de li Xorasanê lêkolîn kirbû wan wek dewletên serbixwe destnîşan dike; Cinaran, Bam ku Meanabad jî dihat binavkirin, Kabuşan, Deriguz û Buînurd.

Cinaran berê mîrektiyek gelek xurt bûye. Serwerê wê Mamoş Xan ji eşîra Zaferanî bûye û wî 7 mehan li dijî Ahmed Şah Abdalî ê ku bi navê Şahrukh dixwast welatê wî dagir bike bi serfirazî berxwe daye. Bi vî awayî ewî heta mirina xwe jî serxwebûna xwe parastiye.

Mîrektiya Bam an Meanabad ji herêmên wek Sufiabad, Sultan Meydan û yên din pêk dihat. Mîrê dawîn Sabut Qulîxan ketibûye destê artêşa Şah, ew birine Tehranê û li wir bi jahrdayînê kuştine. Ev herêm êdî ne wek berê bûye, hin gund û bajarên wê xirabe bûne, tenê Sultan Meydan û Sûfîabad zindî mane.

Berê mîrektiya herî xurt ya Kabuşan bûye ku bi piranî wek Quçan tê binavkirin. Fraser dibêje ku mîrê niha Riza Qulîxan e ku ji kal-bavê xwe de malbata wî serweriya vê herêmê dike. Berê Mahomed Huseyin Xan serwer bû, wî li Şîrwanê kelayeke mezin avakiribû û bi xwe jî li wir dima. Piştre kurê wî Mîr Sunah Xan navenda mîrektiyê biriye Kabuşanê.



Mîr Sunah xwediyê artêşeke xurt a ji 1200 şerkarên bi çek û sîleh bû û wî hercar êrişên tirkmanên ku ji çolê dihatin têkdibir, gelek ji wan dîldigirt û malê wan talan dikir. Ev Mîrektî herêmeke gelek mezin e ku niha tê de dora 25-30 hezar malbat dijîn ku piraniya wan Kurd in. Ji sê paran parek wek koçer jiyan dikin yên ku zivistanan di gundan de û bihar-havînê jî di konan de derbas dikin. Di bajarê navendî Koçan de niha 15-20 hezar mirov dijîn.

Mîrektiya Şîrwanê bi piranî ji bajêr û çend cîwarên derdor pêk tê, lê belê ev der ji ber bazirganiyê û axa wê ya berhemdar herêmeke gelekî dewlemend e. Tenê di nava bajêr de dora 4000 malan henin. Mîrê wê Riza Qulîxan zilamekî pir qenc, merd û qedirbilind e.

Mîrektiya Buinurd jî di destê kurdan de ye û ji aliyê malbata Rudcef Alîxan ve tê bi rêvebirin. Di nava vî bajarî de 3000 malbat dijîn. Derîguj jî herêmeke kurd e, li wir jî bi piranî kurd dijîn. Mîrên wê wek Beglerxan tên bi nav kirin.

Fraser di adara sala 1822 an de digihêje Kalaxanê û li wir ji aliyê Mîr Bederxan ê ku cîgirê Rudşuf Alixan bûye hatiye pêşwazî kirin. Wî çavdêriya sînorê di navbera tirkmanan û kurdan dikir ji bona ku talanbirên tirkman û uzbekan nekevin warên wan. Kalaxan bajarekî piçûk e, li dora wî bi sûr kiriye û li aliyê roavayê bajarê Buinurdê ye.

Bedirxan kurd û xwedî qedrekî mezin bûye. Mîr û serokeşîrên kurdan ew wek temsîlkarê xwe tev Mela Murad Ali şiyandibûn cem Mahomed Rahim Xan ê tatar ku wê demê hukimdarê Keyvan bû. Mahomed Rahim Xan dixwest tevahiya Xorasanê bike bin destê xwe û ji mîrên kurdan alîkariya leşkerî dixwast. Dema kurdan ev daxwaza wî qebûl nekirin, wî jî Mîr Bedirxan û hogirên wî dîlgirtibû û anîbû Keyvanê. Fraser dibêje, her çiqas Mahomed Rahim Xan yekî xedar bû û hêsîrên xwe dikuşt jî, ew li hember Bedirxan bi başî tevdigeriya ji ber ku Bedirxan zilamekî dilpak û qedirbilind bû û bi lîstika kişikê baş dizanibû ku Mahomed Rahim Xan jî her roj bi wî re kişik dileyist.

Fraser dostaniya xwe bi Bedirxan re pêşde dibe û bi saya serê wî gelek agahiyan derbarê herêmên kurdan de yên li Xorasanê, mîr û eşîrên wan digire. Bedirxan her weha miroveki zexm ê şerkar e, ew pêre yekî rastgo û li hember Şah û malbata wî gelek bi kîn û rik bûye. Şah ji alîkî de kurd li hember tirkman û uzbekan dida şerkirin û ji aliyê din de jî dem bi dem bi xwe êriş dibir ser kurdan. Fraser dinivî se ku di dema têkilî sohbetên herduyan de de Bedirxan hatibûye ser wê baweriyê ku Fraser ji aliyê Îngilistanê hatiye şiyandin ku lêkolînan derheqê rewşa vê herêmê bike. Bedirxan pê re gotiye:

"Bawer bike ku ger ji welatekî Awrûpa, ji Rusya ango hindistanî, fransiz an jî îngiliz, bii  kurtasî ji kû dibe bila bibe 1000 leşker ji bona rizgarkirina Îranê warin wê 20.000 kurd bi wan re bibin yek û piştgiriya wan bikin. Ji bo ku em alîkariyekê dijî Qaçaran bigrin, me li her alî serî lêda lê belê kesî alîkariya me nekir. Hemû hêzên welatên cînar jî bêkêr in. Me bang li Afqanan kir, lê belê hêza serokê wan Futih Xan hat şikandin û ew bi xwe li ser riya revê de hat kuştin, niha êdî ne rêberekî wan heye û ne jî hikûmeteke wan. Haydar şahê Buxarayê jî dewrêşek e û tim qala tiştên badilhewa dike, daxwaziya wî tenê waazdayîna di mizgeftê de ye, misilmankirina cihûyan û kuştina şîeyan e. Ew ne ew mirov e ku tekoşîneke ji bo serkeftinê bike. Me Mahomed Rahim Xan jî carekê ceriband, lê belê ew yekî bêşeref, xayîn û xedar e, bawerîbi wî nabe. Jixwe ger hindek aqilê wî hebûya ew ê niha bibûya hukimdarê tevaya Xorasanê. Ji ber vê jî tenê hêvîyek me maye, ew jî Îngiliz in. Ez baş pê bawer im ku ger Îngiliz warin, ew dikarin serweriya Qaçaran ji holê rakin û bi vî awayî li welat edilayê û nîzamê belav bikin."

Dema Fraser van gotinan şirove dike dibêje, her çiqas ew bi hêrs û zêde bin jî, lê belê ev gotinên Bedirxan hest û ramanên piraniya mirovan eşkere dikin, wisa ku kî bê bila bê kurdê bi wan re bibin yek ku ev bindestî û êrişên li ser wan rabin. Ji ber ku ew dixwazin ji bin nîrê Şah rizgar bin, dijminê wan jî ware ew ê bi wan re yek bin, hêviya wan tenê ew e ku bi serbilindî jiyan bikin.

**Fraser dema salixê rabûn rûniştin û kevneşopiyên kurdên Xorasanê dide, di vê derbarê de van gotinên kalekî kurd neqil dike:**

"Dewra berê em kurd gelekî wêrek û şerkar bûn, hebûna me kêm bû lê têra me dikir. Me hiz ji mêvanan dikir û em bi ziyareta biyaniyan kêfxweş dibûn. Xwarin û vexwarina me ji nan, şîr û goştê xav yê ji pezên me pêkdihat. Dema em derdiketin rêwitiyê hewcedariya me tenê bi du cilan hebû; yek ji bo hespên me û yek jî ji bo me. Em ji konekî diçûn yeke din û li her derê rastî mirovên rûken dihatin yên ku çi xwarinê hebe didan ber me. Di konên me de herdem cihekî aram ji bo hevalên me amadebû. Wek gotinekî me ê bav-kalan jî dibêje, du deriyên konên me hebûn, ji yekî dost û heval diketin hundir û ji yê din jî mirov bona êrişî dijminan bike derdikeve, lêbelê divê di hundir de şer û doz çênebe. Ji bilî keriyan, hesp û çekên me jî hebûn, ev herduyên dawîn serbilindiya me bûn. Heta dema Nadir Şah hewcedariyeke bi dirav û durran li cem me tune bû. Dema ew hat kuştin, hemû text û konê wî ê ji durran ket destê me, şerkar û rêberên me ew di nav xwe de parvekirin û ew beramberî hindek zîv û sifar diguhartin. Ji wê demê pêve di qerektera me de jî guhartinan destpêkir; me jî xûy-xeysetê Qaçaran hilgirt û dest bi zordestiyê û talanan kir ji bona ku malê dinê bikin destê xwe. Me dest ji konên xwe berdan û em hatin di malên gundan de cîwar bûn, xwarin û vexwarina me zêdetir bû û lê belê rêberên me êdî weke berê qedrê mirovên xwe nagirin."





# Tevî 'pêvajoyê' binpêkirin zêde bûn

İHD' ya Şaxê Amedê raporta xwe ya binpêkirinên mafê mirovan ên ku di sala 2014'an de li Kurdistanê pêk hatine bi daxuyaniyeke çapemeniyê ji raya giştî re ragihand. Li gor raporta İHD'ê di sala 2014'an de 19 hezar û 614 bûyerên binpêkirinê pêk hatine. Ji raportê diyar dibe ku li gor sala 2013'an li Bakurê Kurdistanê bûyerên binpêkirina mafê mirovan pir zêdetir bûne.

Bîlîcî zêdebûna binpêkirinan bi destpêkirina êrîşên DAIŞ'ê yên Herêma Başûrê Kurdistanê û Rojava û çalakî û xwepêşandanên bi mebesta protestokirina van êrîşan re têkildar kir û angaşt ku Hikûmeta AKP'ê di şûna ku berpirsên van binpêkirinan derxe holê berovajî wan diparêze. Bîlîcî, sedemeke din a zêdebûna binpêkirina mafan jî weke gavnehavêtinên pêwîst ên ku di pêvajoya çareseriyê de divê bihatana avêtin destnîşan kir û got: "Bertekên tûnd ên li hemberî çalakiyên demokratîk diyar dikin ku Hikûmeta AKP'ê polîtîkayên xwe yên hişt sist nekirî ye"

**'Li ser girtiyên nexweş bazar nabe'**

Racî Bîlîcî di berdewamiya axaftina xwe de angaşt ku Hikûmeta AKP'ê babeta girtiyên nexweş ku di van mehên dawî de pir têne rojevê, dike babeta bazara siyasî, rexne li hikûmetê kir û xwest ku hikûmet dest ji vê helwesta xwe berde. Bîlîcî got: "Di girtîgehan de bi giştî 649 girtiyên nexweş ku 247 ji wan tûşî nexweşiyên giran hatine hene. Lê belê ji bo tedawî û dermankirina van girtiyan tu kar û xebat nehatine kirin. Tedawî û dermankirina girtiyên nexweş pêwîstiyeke mirovî û şertekî sereke yê parastina mafê mirovan e. Nabe ku bibe babeta bazara helwestên siyasî"

**Zarok bûne armanca êrîşan**

Serokê İHD'ê ya Şaxa Amedê Racî Bîlîcî di axaftina xwe de mudaxelekirina çalakî û xwepêşandanan destnîşan kir û da da zanîn ku ji ber van mudaxeleyan gellek zarok rastî binpêkirina mafên xwe yên ku ji ber zarok in divê neyêne kirin bûne. Bîlîcî wiha dom kir: "Di sala 2014'an de li Bakurê Kurdistanê , li dij 230 çalakiyên civakî mudaxele hatine kirin û di van mudaxelekirinan de 106 kes birîndar bûne. Di 2014'an de 840 kes ku 444 jê zarokin hatine binçavkirin û 669 kes ku 106 jê zarokin hatine girtin. Di bûyerên ku ji bo piştgiriya Kobanê rû dabûn de 128 kes ku 56 jê zarokin hatine binçavkirin û di van bûyeran de 19 kes ji ber mudaxeleyên polês û leşkeran hatine kuştin û 30 kes jî bi giranî birîndar bûne.

Di daxuyaniyê de Nûnerê İHD'ê yê Herêma Bakurê Kurdistanê Abdulselam Înceoren daneyên raporta İHD'ê ya binpêkirina mafê mirovan a sala 2014'an aşkere kir. Li gor vê raportê di sala 2014'an de bi giştî 19 hezar û 614 bûyerên binpêkirinan pêk hatine. 9 milîtanên PKK'ê hatine kuştin û yek birîndar bûye. 14 polês û leşker hatine kuşin û 10 birîndar bûne. 56 sivîl hatine kuştin û 103 kes birîndar bûne.  22 kes ji ber sedemên îhmalkariyê mirine û kesek birîndar bûye. 29 jin, 29 mêr ku 4 ji van leşker û polês in û 12 zarokan xwe kuştine, 7 jin û 6 mêr di encama hewldana xwekujiyê de birîndar bûne. 4 kuştinên namûsê pêk hatine. 3 hezar û 840 kes hatine binçavkirin û 669 ji van hatine girtin. 1 hezar û 480 kes rastî tûndî û skenceyê bûne. Di çalakiyên girseyî de 106 kes birîndar bûne. Her wiha 8 hezar û 161 bûyerên binpêkirinê yên li dij bikaranîna mafê aborî û civakî pêk hatine.

**'Meşandina pêvajoyê ne hêsan e'**

İHD'a Şaxê Amedê di danezana vê raporta binpêkirinên mafê mirovan ên sala 2014'an ya ku li dezgehên çapemeniyê belav kir de jî balê kêşaye ser pêvajoya çareseriyê ku di encambûyîna xwe de dikare binpêkirinên mafê mirovan rawestîne û aştî û aramiyeke mayinde pêk bîne û gotiye: "Ji tecrûbeyên dinyayê em dizanin ku rawestandina şer û pevçûnan weke ku tê payîn ne hêsan e û ev pêvajoyên aşitî û çareseriyê dikare bi deh salan dom bike. Lê belê divê neyê ji bîrkirin ku ji bo sazkirina aşitî û aramiyê, berpirsiyariyên aliyên ku heta niha li dij hev şer kirine jî hene"

İHD'ê di danezana xwe de her wiha vê nirxandinê kirî ye: "Ji ber ku pêvajoya çareseriyê destpê kirî ye di serî de Gelê Kurdistanê, di dilê hemû gelên Tirkiyeyê de hêviya ku wê şer û pevçûn rawestin û wê aştî û aramî pêkan bibe geş bûye. Lê belê ev hêvî, ji ber nêzîkahî û helwestên desthilatdariyê û şêweyê bikaranîna zimanê wê ku dixwaze pêvajoyê di bin pawana xwe de bimeşîne, hinek hatine şkestin û di dilê gellek kesan de peroşiya ku wê pêvajo bi encam nebe der kirî ye. Ji ber ku ji destpêka pêvajoyê ve polîtîkayên ku hendazeyî û hestiyariyên têkçûna pêvajoyê piştguh dikin têne meşandin pêvajo pir bi pêş neketiye. Ev yek jî bûye sedem ku binpêkirinên mafê mirovan ji sala destpêkê pir zêdetir bûne"

**'Bûyerên Cotmehê û Cizîrê nîşane ne'**

Di danezanê de her wiha tê gotin ku bûyerên di navbera 6 û 8'ê Cotmeha sala çûyî yên ku piştî DAIŞ'ê êrîşî Kobanê kir û kete nav bajêr, li Kurdistan û Tirkiyeyê rû dan û her wiha bûyer û kuştinên ku li Cizîrê rû dan jî bi mirov didine zanîn ku divê di vê pêvajoyê de her kes bi hendazeyî tevbigere û hewl bide ku pêşî li bûyer û kirûyên ku dikarin ziyanê bidine pêvajoya çareseriyê bigirin. Di danezanê de wiha tê gotin: "Di bûyerên protestokirina êrîşên DAIŞ'ê yên Kobanê de li gellek bajaran bi dehan mirov rastî tûndiya hêzên ewlehiyê bûn, bi dehan kes ji alî kesên nepenî ve hatin kuştin û bi sedan kes birîndar bûn. Her wiha di dawiya sala çûyî de li Cizîrê 4 jê zarok 6 kes hatin kuştin. Ev bûyer ji bo pêwîstiya bi rêk û pêk meşandina pêvajoyê nîşaneyên grîng in. Li gel di beyanatên şahidên ew kesên ku li Cizîrê hatine kuştin de têne gotin ku ew kes ji alî hêzên ewlehiyê ve hatine kuştin jî, di derbarê van bûyeran de lêpirsîneke baş nehatiye kirin û berpirs û rayedarên hikûmetê wek bûyerên ku beriya van pêk dihatin dîsa li gel ku di dest wan de tu delîl tune ne jî, hêzên ewlehiyê diparêzin û wan nadarizînin. Ev yek jî dibin seden ku pêvajo bi geşbînî neyê pêşwazîkirin"




## Binpêkirin gihîşt asta tirsnak

Komeleya Mafê Mirovan(İHD) a Şaxê Amedê raporta xwe ya salane ya  sala 2014'an a binpêkirinên mafê mirovan ên wek; Skence û rûbirûbûyîna tûndî, azadiya raman û xweravekirinê, azadiya çapemeniyê, rikberiyên li dij kombûn û xwepêşandanan, rikberiyên li dij jin û zarokan û ziyanên aborî û civakî ên li Bakurê Kurdistanê bi daxuyaniyeke çapemeniyê ji raya giştî re aşkere kir û raporta xwe ya binpêkirinan bi danezakê belav kir. Di daxuyaniya ku li avahiya İHD'ê ya Şaxê Amedê hate dayîn de Serokê Şaxa İHD'ê ya Amedê û Cîgirê Serokê Giştî yê İHD'ê Racî Bîlîcî, Endamê Lijneya Rêvebir a Navendî ya İHD'ê Şevket Akdemîr, Nûnerê İHD'ê yê Herêma Bakurê Kurdistanê Abdulselam Înceoren û hin berpirsên İHD'ê amade bûn. Di daxuyaniyê de Serokê Şaxa Amedê yê İHD'ê Racî Bîlîcî raportê xwend. Bîlîcî ragihand ku di sala 2014'an de li Bakurê Kurdistanê 19 hezar û 614 bûyerên binpêkirina mafê mirovan pêk hatine û da zanîn ku li gor sala 2013'an ku li Tirkiye'yê pêvajoya çareseriyê destpê kiribû, di sala 2014'an de rêjeya binpêkirina mafê mirovan pir zêdetir bûne.

www.arsivakurd.org

## Çûkên xelqe li ser garisên me dinikulin



Piştî leşkeriya xwe diqedîne dîsa vedigere nav kar û xebatên kurdperweriyê. Di derbarê kurdperweriyê de Şêx Mîsbah, balê dikêşîne ku di wan salan de hin terîqetan kesên bi karûbarê kurdperweriyê re mijûl dibûn bi 'Kafirbûyîne' tawanbar dikirin û dibêje: "Ji ber vê yekê em jî hinekî ji olperweriyê sar bûn. Çi şêx û mela, çepgir û rastgir ku doza kurdperweriyê dikirin ji alî van terîqetan ve bi kafiriyê dihatin tawanbarkirin û reşkirin. Ev terîqet ji alî dewletê ve dihatin peywirdarkirin da ku pêşî li kar û xebatên kurdperweriyê bigirin. Mistefa Barzaniyê ku di tekoşîna kurdîtiyê de ji 12 kurên xwe 6 jê şehîd daye, ji ber ku li dij rejîma Baas şer dikir, ji alî van terîqetan ve bi kafiriyê dihate tawanbarkirin. Gotineke me heye. Dibêje: 'Çûkên xelqê li ser garisên me dinikulin' Mixabin Kurdistan garisgeha me ye û çûkên tirk, ereb û faris li serê dinikulin. Ji bo ku em ji bin nîrê vê riswahiyê derkebin divê em yekîtiya xwe pêk bînin. Lê belê ji ber ku kurdîtî reseniya me bû gellek zarokên şêxên wan terîqetan ên wek Şêxên Bêzwanê, Şêxên Norşînê û Şêxên Bexça jî beşdarê tekoşîna kurdîtiyê bûn"

### Şêx Mîsbah

# Çinarek ji dîroka kurdî

**Mustafa Pola**

Dareke çinarê ya dîroka nêzîk a Kurdistanê ku şahidiya gellek bûyer û qewimînên dîrokî kirî ye. Bi deng û awaza xwe ya xweş beytên kurdî û helbestên helbestkarên kurd nexşandiye û gellek şagirtên kurperwer perwerde kirî ye û gihandiye. Dostî û rêhevaltiya gellek pêşengên kurd ên wek Cegerxwîn, Bedîulzemanê Seîdê Kurdî û her wekî din kirî ye. Dibêje Mesûd jî, Abdula jî û Celal jî rengen ji hev in. Divê ji hev bin"

Ev kesê ku em behsa wî dikin Şêx Mîsbahê kurê Şêx Cafer e. Ji zurriyeta Şêx Mihemedê Şenbekî ye. Bi eslê xwe ji gundê Talaş ê girêdayî Sason in lê belê nêzîkî 300 sal berê hatine aliyê Rişkota. Jê pê ve gorên ziyaret ên bav û kalên wan li wê derê ne. Paşê hatine Farqîna Amedê û li wir bi cih bûne. Ji destpêkê ve di reha malbata wî de xwîna kurdperweriyê diherike û ji ber ku piştgirî didine Serhildana Şêx Seîd a sala 1925'an apekî wî tê darvekirin, malên wan têne şewitandin û çar zarokên wan di kêliya şewitandina malên wan de hatine kuştin. Piştî vê bûyerê koçî Binxetê dikin û Haco Axa ew dihewînin. Piştî di 1934'an de efûyek dertê dîsa vedigerin û têne Farqînê. Piştî van bûyerên dijwar Şêx Mîsbah di sala 1937'an de li Farqînê çavên xwe li jiyanê vedike. Lê belê peşka mirinê dest ji wan bernade. Di wê salê de Şêx Mîsbahê Cemîlê Mala Bokan, Cemîlê Seyda û Şêx Ebdulrehîmê birayê wî Şêx Seîd û kurê Tewfîqê Seydxanê Kerr ji bo biçine alîkariya Seyîd Riza xwe amade dikin ku derbasî Dêrsimê bibin lê belê li Gundê Perîşanê yê Bismil şehîd dikebin. Ji ber ku Şêx Mîsbahê ku di vê bûyerê de şehîd dikebe destbirayê bavê wî ye, bavê wî jî navê Mîsbah lê dike. Di sala 1943'yan de dest bi dibistana seretayî dike û diqedîne lê ji ber ku dibistanên fermî bala wî pir nakêşîne di 1949'an de dest bi feqîtiya medreseyê dike û jê pê ve li ber destê gellek şêx û melayan xwendina xwe ya ilmî her dom dike. Piştî ku di sala 1951'an de li Binxetê Cemiyeta Xoybûnê tê damezirandin û rojnameya Welat dest bi çapkirinê dike, li bakur jî hin xebatên siyasî destpê dikin. Li gel hevalên xwe yên wek; Mele Ebdulkerîm, Selîm Ezîzoxlî ew jî beşdarê van xebatan dibe.

Di sala 1957'an de dema leşkeriya wî tê û ji bêçarî diçe İsparta û dest bi leşkeriyê dike. Tesaduf wê demê Bedîulzeman Saîdê Kurdî jî li İspartayê ye û cihê ku lê dimîne pir nêzîkî tabûra ku ew lê leşkeriyê dike. Ji ber ku dibe meleyê yekîneya xwe û ji ber vê yekê jî beşdarê tiştekî nabe pir caran derfet dibîne ku biçe cem Bedîulzemanê Saîdê Kurdî. Mele Mîsbah wê demê wiha vedibêje: "Di navbera yekîneya me û mala ku Ustad lê dima tenê xeta trênê hebû. Ez her roj diçûme cem wî û min ji cenabê wî re beytan digot. Min qala Cegerxwîn ji Cenabê wî re kir. Rojekê ji min re got; 'Kurê min, oldar di derbarê Cegerxwîn de tiştên ne xweş dibêjin' Min jê re got; 'Ustadê min helbestkar di helbestên xwe de xwe didin dest. Ez ê helbesteke Cegerxwîn bixwînim û tu biryar bide ka Cegerxwîn mirovekî çawa ye' û min xwend;

*'Şer'a nebewî hikmê hedîsan wê hilat.*
*Bo şêx û melan ma li dinê fitir û zekat.*
*Zanim ku heye piştî heyatê re memat.*
*Zanim ji xweda pêştir tune kes ebedî.*
*Ya reb tu ji bo miletê kurdî medet î'*

Ji min re got; 'Kurê min, kîjan kafirî ji Cegerxwîn re gotiye kafir' piştre her xwendina beyt û helbestên kurdî ji min xwest. Min beyt û helbestan dixwend û ew bi zikran diket û dilerizî."

Şêx Mîsbah'ê ku li Farqînê ji alî gel ve pir tê hezkirin di çareserkirina pirsgirêkên bajêr û gelê bajêr de li gel Mehmûd Ezîzoxlû û Mêdî Zana roleke mezin dileyize. Ji ber vê yekê ciwanên kurd xwe li dora wî dicivînin û ji bo ji tecrûbe û zanînên wî sûd wergirin her têne cem wî û beşdarî sohbetên wî yên tije dîrok û çand û huner dibin. Ew wan ciwanan wek şagirtên xwe dibîne û her zanînên xwe pêşkêşî wan dike. Yek ji wan ciwanan jî Mahsûm Korkmaz, bi navê xwe yê di 'Egîd' e. Şêx Mîsbah şagirtiya Egîd wiha vedibêje: "Hîna nûciwan bû. Bihîstibû ku ciwan têne cem min û ew jî dihat. Malbata wî ji ber metirsiya wê dewlet ziyanê bide wan nedixwest bê cem min, lê belê Egîd dihat. Ciwanekî pir jîrek û çalak bû û her dem bi baldarî guhdarî dikir. Paşê ku malbata wî balê bar kirin çûne Batmanê têkiliya me jî qut bû"

Şêx Mîsbah'ê ku gellek caran tê binçavkirin û girtin, di salên 90'an de ji ber zext û zorên dewletê û ji ber kuştinên Hîzbûllahê, ji bêçarî koçî Mêrsînê dike. Lê piştî ku 15 salan li Mêrsînê dimîne dîsa vedigere Kurdistanê Amedê. Şêx Mîsbah di dawiya axaftina xwe de daxwaz dike ku kurd li şîretên wî guhdarî bikin û van şîretan li kurdan dike:

"Ji terqa Şêx Seîdê Pîran heta îro malbata me gellek şehîd dane. Di hereketa PKK'ê de 11 lawên me şehîd ketine. Li gel hemû zor û zehmetiyan jî ez dizanim ku ne bi yekîtiyê be em nagihîjin meqseda xwe. Doza kurd û Kurdistanê ne bi bêbawertiyê ne jî bi oldartiyê, ne bi sosyalîzmê çêdibe ne bi lîberalîzmê digihîje armanca xwe. Doza kurd bi kurdperwerî û neteweperweriyê dikare bigihîje armanca xwe. Herkes xwedî bîr û bawerî û ramanekî ye. Lê divê meseleya netewetiyê li ser her tiştî be. Çawa ku tirk ji ber rikberiya bîrdozî hev û din riswa dikin lê di meseleya netewetiyê de her digihîjin hev divê em jî zanibin ku ne wisa be em nikarin bi ser bikebin. Mesûd jî, Abdula jî û Celal jî rengen ji hev in. Divê ji hev bin"



## Helbestên Cegerxwîn

Ji ber van xebatan siyasî gellek caran diçe Binxetê û tê û di vê kêliyê de li Qamişloyê Cegerxwîn dinase û demekî li ber destê Cegerxîn şagirtî dike. Di wê demê de bi Cegerxwîn re helbestkariya Cegerxwîn a bêhempa dibîne û tûşî bengîdariya helbestxwendinê dibe û ew roj îroj e, di civatên şêx û meleyan de û di diwanan de bi awazeke tîndar li gel helbestên xwe helbestên Cegerxwîn û paşê jî bi nasîna Melayê Cizîrî dîwanên wî dixwîne. Piştî vedigere jî li gundên Sergewra, li Elebociya û li gellek derên din li ber destê alimên wek Seydayê Mele Hamid, Seydayê Mele Hiseynê Kiçik feqîtiyê dike û dersên Faraîz û ilmên dinê werdigire.





### Berhem:

# Ez bi muzîkê vedigeriyam welat

Xelîl Berhem anî ziman ku ew li Stenbolê bi lêdana gîtarê û xebata muzîkê li welêt vedigeriya û xwe ji nû ve nas dikir. Xelîl her wiha eşkere kir ku wî kurmancî ji bîr kiribû û bi lêdana muzîkê jî dîsa berê xwe daye zimanê xwe. Xelîl behsa sedemên destpêkirina muzîkê jî kir û wiha domnad: " Bi rastî kes destpêka jiyana muzîka muzisyenekî nizane. Lê ew gîtara ku min li Stenbolê di navbera koçên bêgavî û bobelatên siyasî de bi xercîyên xwe kirîbû û mîna dostekî dabû ber dilê xwe, ji bo min xala werçerxê bû di muzîkê de. Muzîk ji bo min ronahiyeke xelasiyê bû, da ku ez ji çanda xwe dûr nekevim. Gava min dest da têlên gîtarê ez di hundirê xwe de derketim rêwîtiyekê. Di nav notayan de ez gihame peyvên zimanê xwe yê ku min hêdî hêdî ji bîr dikir. Ligel muzîkê ez ji nû ve hînî kurdî bûm. Her ku min lê da ez ji nû ve hatim dinya yê. Ez dikarim bibêjim ku jiyana min a muzîkal bi vê jidayikbûna min a jinûve dest pê kir. Ez bi muzîkê vedigeriyam welêt min xwe li newal û deştên welatê xwe hîs dikir. Ji giregira Stenbolê dûr diketim. Min wisa dest pê kiribû. Niha jî ez bi şadiyeke mezin distirêm."

**Siwar Bedirxan**

Wêrenbûn û talanbûna bajar û gundên kurdan berê gellek kurdan da metropol û bajarên Tirkiyê. Kurdên li wan bajarên Tirkiyê bicih bûn. Ji bo ku ji ziman û çanda xwe dûr nekevin, berê xwe dane huner çand û muzîka kurdî. Xelîl Berhemê ji Elihê jî yek ji wan kesa ye û wî jî xwe ji xirecira metropolan dûr xistiye û xwe avêtiye hembêza muzîkê.

Berhem eşkere dike ku ji ber mercên siyasî malbata wî koçî Stenbolê kiriye û li Stenbolê dest bi muzîkê kiriye û piştî arambûn û başbûna hewa siyasî ew dîsa vegeriyane Elihê. Berhem li ser jiyana xwe ya li Stenbolê j rawestiya û wiha got: "Di salên 1990'î de, ji ber mercên siyasî yên dijwar me berê xwe da Stenbolê. Piraniya xwendekariya min li cihaneke xerîb derbas bû ku qet nedişibiya Batmanê û ez bêgav bûm ku hînî wê yekê bibim. Di 2003'an de, piştî ku rewşa siyasî hinekî guherî û hindik be jî welat aram bû. Ez vegeriyam Batmanê. Min zanîngeh li Batmanê temam kir. Jiyana min a muzîkê li Stenbolê dest pê kiribû. Niha jî ez li Batmanê dijîm û xebatên xwe didomînim."

Xelîl Berhem anî ziman ku ew li Stenbolê bi lêdana gîtarê û xebata muzîkê li welêt vedigeriya û xwe ji nû ve nas dikir. Xelîl her wiha eşkere kir ku wî kurmancî ji bîr kiribû û bi lêdana muzîkê jî dîsa berê xwe daye zimanê xwe. Xelîl behsa sedemên destpêkirina muzîkê jî kir û wiha domnad: " Bi rastî kes destpêka jiyana muzîka muzisyenekî nizane. Lê ew gîtara ku min li Stenbolê di navbera koçên bêgavî û bobelatên siyasî de bi xercîyên xwe kirîbû û mîna dostekî dabû ber dilê xwe, ji bo min xala werçerxê bû di muzîkê de. Muzîk ji bo min ronahiyeke xelasiyê bû, da ku ez ji çanda xwe dûr nekevim. Gava min dest da têlên gîtarê ez di hundirê xwe de derketim rêwîtiyekê. Di nav notayan de ez gihame peyvên zimanê xwe yê ku min hêdî hêdî ji bîr dikir. Ligel muzîkê ez ji nû ve hînî kurdî bûm. Her ku min lê da ez ji nû ve hatim dinya yê. Ez dikarim bibêjim ku jiyana min a muzîkal bi vê jidayikbûna min a jinûve dest pê kir. Ez bi muzîkê vedigeriyam welêt min xwe li newal û deştên welatê xwe hîs dikir. Ji giregira Stenbolê dûr diketim. Min wisa dest pê kiribû. Niha jî ez bi şadiyeke mezin distirêm."



Muzîkjen Xelîl Berhem di berdewamiya axaftina xwe de behsa kelepor û folklorê jî kir û anî ziman ku hemû hunermend ji keleporê mifayê werdigrin û ew jî vê yekê dike û berhemên folkorîk jî dixwîne. Berhem eşkere kir ku ew besteyan jî çêdike û tesîra muzîka kurdî ya qedîm li ser besteyên wî hene. Berhem her wiha berdewam kir: " Her muzîsyen bermayiyên muzîka xwe ya çandî dixwe û xwe li ser wê ava dike. Muzîka klasîk û folklorîk a kurdî bandoreke mezin li ser binesaziya muzîka min kiriye. Her tingîneke çanda muzîka kurdî ya qedîm nazilî nav notayên min jî bûye. Kimyaya hunera muzîkê wek avê ye. Li cihê ku tu dihêlî nasekine, min jî negot muzîka klasîk a kurdî rawestgeha min a dawî ye. Wê demê ligel ku min guh dida muzîsyenên mîna Ciwan Haco, Xêro Ebas û Koma Wetan ku muzîka kurdî û ya cihanê xerman dikirin û di warê muzîkê de têhilanînên wêrek pêk dianîn, min riya ber xwe jî diyar dikir. Etno pop, caz û bluesê hertim tesîreke kûr li min dikir. Gava ku min besteyên xwe çêkirin û gotinên xwe nivîsîn, min şêweya xwe jî li ser vê binesaziya muzîkê ava kir. Ez stranên folklorîk jî dixwînim û ji xwe re besteyan jî çê dikim."

Xelîl Berhem li ser karên xwe yê rojane jî radiweste û eşkere dike ku karê wî yê eslî teknîkeriya ceyranê ye. Lê belê ew dema wextê dibîne hemû hêza xwe dide muzîkê û li ser muzîkê kar dike. Berhem wiha berdewam kir: "Ji bo domandina jiyanê carinan divê tu di karên ku ne bi dilê te ne de bixebitî. Ez teknîkeriya elektrîkê dikim. Di demên xwe yên herî tijî de jî ez hemû vejena xwe didim muzîkê."

Xelîl Berhem rexneyên li muzîkjenên kurd jî bi bîr xist û daxuyand ku gellek muzîkjenên kurd ê baş hene. Berhem behsa muzîkjenên kurd ê neserketî jî kir û anî zima ku ew xwe dûbare dikin û xebata wan ji huner û muzîkê dûr e. Berhem her wiha domand: "Mezintirîn kêşeya me ew e ku axleb hunermendên kurd li cihê berhemên resen neafirînin, dişibînin hev. Ajitasyon û propagandayeke ecêb bikartînin. Û wisa bawer dikin k ew muzîk û huner e. Siyaset û êş bi qasî bextaweriyên me parçeyen ji muzîkê ne, lê divê ev hemû bi awayekî rast û resen bêne bikaranîn û divê ne xav be. Lewre muzîsyenên bêker vê yekê dikin."

Muzîkjen Xelîl Berhem, di dirêjahiya axaftina xwe eşkere kir ku gellek muzîkjenên modern li ser berhemên klasîk ê kurdî kar dikin û ewê jî di pêşerojê de li ser berhemên klasîk kar bike. Berhem, giringiya berhemên klasîk ên kurdî destnîşan kir axafina xwe wiha bi dawî kir: " Hin muzîsyenên kurd hene ku berhemên klasîk ên kurdî bi awayekî serkeftî ji nû ve şîrove dikin. Lê min hê heta niha berhemeke klasîk a kurdî şîrove nekiriye. Muzîk karekî hestiyarî ye. Pêla hestiyariyê mirov digire û pê re jî muzîk derdikeve holê. Di pêşerojê ez ê li ser berhemên klasîk jî kar bikim. Berhemên klasîk ên kurdî hîmê hemû hunera kurdî ne.



www.arsivakurd.org

## Ferhat Keskin:

# Şanoya kurdî birîndar e

**Çetoyê Zêdo**

Derhêner, lîstikvanê şano û sînemayê û herwekîdin kedkarê şanoya kurdî Ferhat Keskîn bal kişand ser kêmasî û pêşketinên şanoya kurdî û li ser dahatû û paşeroja wê anî ziman ku şanoya kurdî pir dûv boçika rojev an jî siyaseta rojane dikeve, tevî astengiyên ku li ber in jî barê xwe girantir dike û bo gihîştina asta cîhanî dereng dimîne. Keskîn di warê gihîştina lîstikvan û kedkarên bêşên din ên şanoya kurdî de jî diyarkir ku têkiliya şanogeran bi zimanê xwe re pir ne baş e û divê ji bo geş bûna şanoya kurdî derfet hebin ku kesên di warê şanoyê de li hev dûr xwe gîhandinê li sahneya kurdî bêne civandin. Keskîn li ser xebat û jiyana xwe ya ser dikê, têkiliyên xwe yên bi şanoya cîhanê re û rewşa şanoya kurdî nirxên xwe bi me re par ve kir.

**Tu ji kengê ve bi şanoya kurdî re têkildarî?**

Ji 17, 18 salî ya xwe ve û vir de eleqeya min bi şanoya kurdi heye.

**Mijarên ku dibin astengî yên ji bo şanogeriya te hene, ku hebin tu dikarî ji me re qal bikî?**

Şixulê şanogerîyê herdem rastî astengîyan tê, lê em ku bixwazin, dikarin bi hêza xwe ya xeyalan çare yan bibînin û rêka xwe ji astengîyan paqijkin, vekin.

**Xwestek û helwesta te ji bo şanoyê çi ye?**

Ji bo min ger şano politik be. Ew belkî nikare dinyayê biguherîne, lê dikare piştgiriya ferdan, takekesan di rêka wan ya azadbûnê de bike. Ji ber ku hetanî takekes azad nebe, ne civak ne jî dinya diguhere.

**Ji bo te şanogerî tiştekî çawa ye?**

Tiştekî xweş e! Bê henek bibêjim: şanogerî û aktoriyê tarîya hundirê min ronî kir. Min di aktorî yê de xwe naskir.

**Ji kerema xwe bi giştî tu dikarî qala disiplîna xebatên xwe bikî?**

Disîplîn mijareke sereke ye di karê min de. Rast e şano lîstik e, lîstik zaroktî ye, zaroktî xwe berdan e, azadî ye, lê ku nebe disîplîn û cidîyet, ew lîstika nayê terbîye kirin û nabe huner.

**Li gorî te şanoya kurdî ber bi ku ve diçe?**

Şano ya kurdî, şikur bi van rojan, ber bi xweşiyê ve diçe. Ez ji pêşaroja wê hêvîdarim.

**Şanoya kurdi li gorî dîtina te, ew ê bigihîje ku? Têbîniyên xwe bêjin?**



Berî deh salan rewşa şanoya kurdî ji îro xirabtir bû. Ew hunera herçî diçe zêtir bala kurdan dikşîne. Ji ber ku ev xelka hewcê vê hacetê ye. Travma yên giran di ser kurdan de hatin. Ruhê wan bi kul e, bi birîn e. Hemû beşên hunerî, di nav wan de şano jî dikare bibe derman ji bo wan, di saxbûyîna wan de rolekê bileyîze. Di çavê min de bînerê kurd hay ji vê tiştê heye, lewma jî herçî diçe ji tîyatroyê hez dike.

**Bandora kîjan şanogeran li te çê bû? Û bêhtir kîjan serekeyên cîhana şanoyê diecibînî?**

Roberto Ciulli, Peter Brook, Cristoph Marthaler, Jürgen Gosch... Herwiha Wil-liem Shakespeare, Georg Büchner, Hendrik Ibsen, Federiko Garcia Lorca, Bertolt Brecht, Moliere jî kesên ku pir diecibînim in.

**Heta niha di şanogeriya xwe de, tu zêde li ser çi disekinî û lê hûr dibû?**

Li ser pirsa "çawa". Ango, ez çawa, bi çi şiklê, çi estetikê dikarim gotinên xwe bibêjim, ser wîya disekinim. Ji ber ku, ez dixwazim bigihîjim binehişî ya bîner û ew jî ne kare kî hêsan e. Ji xwe ez jî, ji karên zor hez dikim.

**Guhertinên şanogeriya te berê û niha hene?**

Di xortanî ya xwe de, min pir tişt bi darê zorê rêva dibir. Niha baweriya min bi zorkirinê nema ye. Niha hez dikim, her tişt bi xwezayî çê bibe, were holê. Karê min jî ew e ku, bingehekê çêbikim, ji bo wê xwezayî yê.

**Li gorî çavderiyên te temaşevanên şanoya kurdî kî ne?**

Min gava din jî got... Şanoya kurdî, mîna insanekî birîndar e, bi kul e, bi derd e, tiştên ku ruhên wî sax bikin, li wan digere. Hez dike bikene, şa bibe. Zarok, tiştên ku tesîr dide wan dikin lîstik û di nav lîstikê de dikin ku ji wê tesîra xirab xwe jê xilas bikin. Şanogerîya kurdî jî, bi karmend û bînerên xwe wisa ye.

**Şanogerên kurdî, têkiliya wan ziman çawa ye?**

Ne baş e! Lê em hîn di serê rêyeke dirêj de ne. Kurdî ya bîneran çiqas baş be, yên şanogeran jî ewqas baş dibe.

**Divê şanogerên kurd, kîjan devokan bizanibin?**

Hemûyan. Ku vêyajî nikaribin, qene diyalekt û devokên xwe bila biparêzin. Ji ber ku ew dewlemendîyên vî zimanî ne. Nebe ku em di rişya standardkirinê de zimanê xwe beyar bikin. Da ku pêşerojê de, ew standardkirina ziman bi şiklekî xwezayî pêk were, ger şano wan diyalektan ser dikayê bine cem hev. Wek mînak, Comedia Dell Art a Îtalî di vî warî de li wî welatî, rolekî gelek giran leyistîye.



**Li gorî te rexneya şanoyî divê çawa be?**

Rexnegerî ya şanoyê beşekî bi sere xwe ye. Li welaten Ewrûpî stûnekî sereke ye di hunermendîya tîyatroyê de. Pirek e di navbera şanoger û bîneran de. Divê zimanê bîner, şanoger ji bo kêmasiyan rexne bike, ji bo xweşiyan dipesîne, bi vî awayî pêş de çûyîna wî teşvîq dike. Wekî ez dizanim, li Tirkiyê û li Kurdîstanê jî ev pîşe hîn cîhê xwe negirtîye.

**Tu di derbarê perwerdehiya şanoya kurdî de çi difikirî?**

Ev mijareke giriftar e. Di alîkî de tiyatro hunereke gerdûnî ye, bi kîjan zimanî perwerda wî dibînî, bibîne ferq nake. Lê taybetmendiyên şanogeriya kurdî jî hene û hebin jî. Ji bo viyan jî perwerde yatiyatroyê bi kurdî hebe baştir e. Lê mixabin, me ew kadroyên ku lîstikvanan perwerde bikin yan tunene, yan jî pir kêm in. Dîsan jî di vî warî de hewldan hene û ez keyfxweşim bi van hewldanan. Lê qasîku ez dizanim, zahmetî yên xwe pir in. Eşkere ye ku gelek lîstikvanên kurd hene derçûyên dibîstanêntirkî ne. Berê her tiştî, mirov cehd bike, wanan bikşîne şanoya kurdî, aktoriya bi kurdî bike dilgir, bike atraktif da ku ew bixwazin bi zimanê xwe yên zikmakî bileyîzin.

**Li gora te şanoya kurdî û rojeva kurdî çiqasî li hev dike?**

Pir li hev dike. Zêde li hev dike. Pir bi boçika rojevê digre û diçe. Lewma pir caran dibe cigirê siyaseta rojane. Ew ne tiştekî baş e. Ger çavên me hunermendan li kurahiyê û li durahî yê be.

**Li ser şanoya bo zarokan dîtinên we?**

Şuxulekî rêzdar e, hêja yê. Kesayetiya insanekî di zarokatiya wî de, her wiha di nav lîstikê de geş dibe, pêş dikeve, erê şiklê xwe digre. Lê mixabin kurdî di lîstika zarokan de winda bû. Berê kurd, bingehekî wanê zaroktî ya kurdî hebû. Asîmîlasyonê pîl û baskên me dixwarin, le niha kete nav hinavên me. Şano ku bikare, zimanê kurdî wek zimanê lîstikê cardin bide zarokan, karekî pîroz dike.

**Li gorî te, ji wêjeya kurdî û ji ya cihanê divê kîjan çîrok, roman û hwd, di sehneya şanoya kurdî de hebe? Bi ya te bûya, te dixwest kîjan berhem, bûyer an jî mijar têketa şanoya kurdî?**

Heta niha, kurdan para xwe ji berhemên însanetîyê hilnegirtî ne. Heq ê wan e, ji wan berheman çi li wan tê, çi bi dilê wane, bigrin û bi keyf û eşq zayî bikin.

www.arsivakurd.org